BasNûçe
HERDEM RASTÎ
ISSN 2148-5305
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 74 19 - 25 Cotmeh 2015 basnews.com



Amed bi wêneyan geş bû

R16

Şaîrê bindestan Cegerxwîn R14

Faysal Dağlı

Li sîbera dîrokê: Rûsya û Başûrê Kurdistanê R06-7

Zaro Axa R13

Zazaki

"Gerek ma kurdan mîyan ra rexnegirê başî vejîyê" R12

Welat

DAREŞAR R10-11

# Goran êdî ne hêvî ye!

Li Herêma Kurdistanê êrîşên alîgirên Tevgera Goranê yên ser PDK'ê berdewam dikin. Her wiha hat zanîn ku serrokê tevgerê Newşîrwan Mistefa ji welêt derketiye û hîn venegeriya ye. Li hêla din hat zanîn ku di nava partiyê jî de qeyrana navxweyî heye.

Piştî ku Serokwezîr Neçîrvan Barzanî, bi 4 wezîrên Goranê re hevdîtin pêk anî Wezîrê Pêşmerge M. Seyid Qadir,Wezîrê Darayî Rêbaz Hemlan, Wezîrê Bazirganî û Geşedanê S. Serdar Mehmud û Wezîrê Karên Olî Kemal Mûslim ji erkên xwe hatin avêtin.





Prof. Abbas Valî:

Wê Esad êrîşî kurdan bike

R08-9

## Hêzên kurd li ber deriyê Reqqa'yê ne

Wê hêza sereke ya operasyona Reqqa'yê hêzên kurd bin û ew hêzên kurd ê DYA'yê piştevaniya wan dike yekîneyên xwe ber bi Reqqa'yê ve şandine. Her wiha hat zanîn ku DYA'yê ji bo hêzên kurd 50 ton çek û taqemenî şandine. Bi şandina wan taqemeniyan jî wisa hat xuyakirin ku ew ê operasyon di demeke kurt de dest pê bike. Li hêla din hat zanîn ku koordinasyon di navbera Rêveberiya Herêma Kurdistanê û PYD'ê de hatiye duristkirin ku Pêşmergeyên Roj derbasî Rojava bibin.

R05

**Mustafa Turan**

# Newşîrwan Mistefa welat terikand

Li Başûrê Kurdistanê qeyrana ku hefteya çûyî ji ber bûyerên tûnd ên li dij nûsîngehên PDK'ê û avahiyên fermî yên hikûmetê yên Qelediza navçeya Silêmanî û hin navçeyên din rû da, hinek nermtir bibe jî di qada siyasî de gengeşe didome. Piştî banga dabînkirina aramiyê ya Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî û helwesta PDK'ê ya biryardar, YNK'ê xeteriyê dît û xwe ji Goran dûr xist û peymana stratejîk a navbera PDK û YNK'e anî rojevê. Piştî van geşedanan û derzxwarina Tevgera Goran, nirxandinên ku qeyran di serê Goran de teqiya hatin kirin.

Tevgera Goran ku wek gumanbarê bûyeran tê dîtin, daxuyand ku ew ne berpirsê xwepêşandanên ku roja şemiyê pêk hatine. Tevgera Goran ragihand ku ew ê şirîktiya xwe ya hikûmetê bidomînin û heta dawiya heyama yasayî ew ê li parlamanê erka xwe berdewam bikin. Sekreterê Giştî yê Goran Newşîrwan Mistefa ku wek sedemê bûyeran tê rexnekirin, li gel berdewamiya qeyranê jî ji serdana xwe ya derve venegeriya û ev yek bû cihê pirsên 'Gelo Newşîrwan Mistefa reviya? Li gorî îddiayan Mistefa beriya Cejna Qurbanê derketiye gera Ewrûpa'yê û serdana Almanya û Brîtanya kiriye. Lı gor agahiyan Serokê Goran tûşî seretaya qirikê bûye û ji bo dermankirinê li nexweşxaneyeke ku navê wê tê veşartin radizê.

Li RHK'ê, di demeke ku di bereyeke 1500 kîlometreyî de li dij DAIŞ'ê şerekî mezin tê meşandin de, li gel ambargoya darayî ya Bexdayê, ji ber ku ji aliyekî ve bergîdana şer û hewandina bi milyonan penaberan û ji alî din ve rûdana qeyrana serokatiyê qeyraneke mezin a piralî durust bû. Di kêliya vê qeyrana mezin de, çalakî û xwepêşandanên mamosta û karmendên ku 3 mehin mûçeyên xwe wernegirtine, wek di hemû nirxandinên siyasî de tê destnîşankirin, destwerdana Îranê û sorkirina Tevgera Goran bû sedem ku li hin deveran ev çalakî veguherîn êrîşên tûnd ên li dij nûsîngehên PDK'e û avahiyên hikûmetê. Di encama van bûyeran de kuştin, birîndarbûn, ziyaneke mezin a aborî û mezintirbûna qeyranê pêk hatin. Piştî van rûdanan pêşî nûsîngehên PDK'ê yên bajar û navçeyên aloz, paşê jî di serî de ya Paytext Hewlêrê, gellek nûsîngehên Tevgera Goran ji alî hêzên asayişê ve hatin dorpêçkirin û parastin. Aloziyen ku bi van rûdanan destpêkirin, peşka xwe li siyasetê jî xistin û siyaseta Başûr tevlîhev bû.

### 4 Wezîr û Serokê Parlamenê ji kar hatin avêtin

Di nav hemû ev reşgeşeyan de di qada siyaî de jî tevgerîneke heralî dimeşiya.




Piştî banga aramiyê ya Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, Serkwezîr Nêçîrvan Barzanî bi 4 wezîrên ji Tevgera Goran re civînek pêk anî û di encama civînê de hate ragihandin ku Wezîrê Pêşmerge Mistefa Seyîd Qadir, Wezîrê Aborî û Darayî Rêbaz Hemlan, Wezîrê Geşepêdan û Bazirganiyê Salam Serdar Mehmûd û Wezîrê Karên Ayînî Kemal Muslîm ji kar hatine avêtin. Li gel ev 4 wezîrên Goran dûre hate ragihandin ku Serokê Parlamanê Yusif Mihemmed jî ji erka xwe hatiye dûrxistin. Her çiqas di raya giştî û qada siyasi de angaştên derewbûna van agahiyan belav bibin jî Rêveberê Wezareta Plansaziyê Zagros Fettah bi ser BasNûçeyê van agahiyan piştrast kir û da zanî ku Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî ji bo bi wekaletî cihê van wezîran bê dagirtin ferman daye.

### Serokwezîr: Neçar bûn dest ji kar bikşînin

Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Neçîrvan Barzanî jî di derbarê geşedan de daxuyaniyek belav kir û got: "Ji ber êrîşan û ewlekariyê min ji 4 wezîram xwest dev ji erka xwe berdin."Serokwezîr Barzanî daxuyand ku wî ji ber buyerên dawî ji wezîrên endamê Goranê re gotiye dev ji erka xwe berdin û wiha berdewam kir:" Di van çend rojên dawî de hin xwepêşandanên ne aştiya ne û yên qeyrana siyasî mezin kirin pêk hatin. Hin kesên li li bêrpirsiyar tevgeriyan xwestin aramiya li Hikûmeta Herêma Kurdistanê têk bibin. Lê belê hewldana wê grupa biçûk bi hewldanên kesên aştîparêz mezin nebûn. Rêveberiya Herêma Kurdistanê di qonaxeke hesas deye. Nerazîbûne komekê tê fêmkirin. Tişte ku me bextewar kir jî ew bû ku gelê kurd careke din peyama yekgirtinê dubare kir."

Barzanî her wiha axaftina xwe wiha domand: "Di derbarê xwepêşandanên hefteya borî pêkhatin de ez dixwazim eşkere bêjim; xwepêşandan gelê me ya li hember hin tiştan gelekî aştiyane û rewa û meşrû ne. Lê belê weke hemwelatî û Serokwezîrê welêt ji buyerên li Qeladizê, Kelar pirr acizim. Bi hemû hestên xwe ez ji malabatên şehidan re sersaxiyê û ji birîndaran jî re şifayê dixwazim.Ev buyer derfetê didin wan kesên ku dixwazin me parçe bikin. Dijminên me bextewar dikin. Weke hemwelatî û weke berpirsekî welêt ez banga aştiyê li hemû kesî dikim. Ez ji hemû kesî dixwazim ku ji kesên bêberpirsiyarî tev digerin û ji kesên fesadî û rikberiyê belav dikin dûr bin."

Di berdewamiya axaftina xwe de Barzanî bal kişand ser helwesta Hêzên Pêşmergeyan, karmend, mamoste û alimên olî spasiya wan kir ku di dema xwepêşandanan de helwesteke erênî nişandabûn da ku alozî belavtir nebûn. Her wiha Barzanî di derbarê qeyranê jî de got:" Me bi bawerî û rêzdariya li hember hevdû ew parlamento ew hikûmet ava kir. Lê belê wan kesên behsa demokrasî û aştiyê dikirin wan kesên behsa demokrasi û yekgirtinê dikirin ji tiffaqm dûr ketin. Kêşeyên Kurdistanê gelekî mezin kirin, bi nûçeyên derewîn û berpirsiyariya xwe ji bîr vekirin. Xwepêşandan ji mebesta xwe dürbün û gef çêbû li ser herêmê.Ji neçarî min ji 4 wezîran xwest ku dev ji erka xwe berdin. Bi wezîran re tû qeyrana me çênebû. Lê belê li gor erka serkirdeyên xwe kar kirin. Zirar dan hikûmetê. Ne mimkûn bû li ser erka xwe bimînin." Her wiha Barzanî daxuyand ku ew ji ber qeyrana bereyan neraziye û wiha domand: "Partiya me ji bo çareseriya qeyranê li se gelek formûlan difikire. Lê belê çareseriya ku em bibin divê nebe sedema qeyranên nû. Ez di wê baweriyê de me ku divê xelk ji bo serokatiyê nêrîna xwe bêje. Ev mafê herî rewa yê hemwelatiya ye. Eger ev mafê rewa yê gel neyê dayîn ew ê mafê pirsiyariyê yê wî serokê ji destê wê bê wergirtin."

Di berdewamiya axaftina xwe jî de Barzanî da zanîn ku hin karmend,Pêşmerge » xebatkaran mûçe nestendine û weke hikûmet ew li ser wê yekê kar dikin ku bi serçaviyekê wê qeyranê çareser bikin mûçeyê belav bikin.Li hêla din jî Barzanî amaje bi wê yekê kir ku armanca wî ya serek ew e ku aboriya Hikûmetê Herêma Kurdistanê azad bike. Hin siyasetmedaran ji bo rê li ber vê yekê bigrin gelekî hewldane lê belê ew ê bi sernekevin. Di rojên pêş de ji bo avakirina hikûmetê em ê gava duyem biavêjin.Di vî warî de me peyama gelê xwe ya hevgirtinê wergirt em

### Helwesta YNK'ê

Li gel gumanbarkirina ku destê Tevgera Goran di rûdana bûyeran de heye, Wezareta Navxweyî hatina Paytext Hewlêrê ya wezîr û parlamenterên Goran qedexe kir. Di nav vê hengameyê de hemû çav vegeriyan ser YNK'ê û helwesta wê. Her çiqas Cîgirê Serketerê Giştî yê YNK'ê Mele Bextiyar, di 40 rojiya Bazgeneral Sefîn Abdulmecid ku di şerê

# Mesrûr Barzanî: Êrîşên li dij PDK'ê plankirî ne

Şêwirmendê Asayîşa Giştî ya RHK'ê Mesrûr Barzanî, di derbarê xwepêşandanên ku ji ber mûçe wernegirtina karmend û mamosteyan destpêkirine û di encamê de li hin deveran veguherîne êrîşên tûnd ên li dij avahiyên PDK'ê û dezgehên fermî de, bi ser Twitter'ê peyamek ragihand. Barzanî di peyama xwe de bi gumanbariya ku destwerdana bûyeran kirî ye û rewşê aloztir kirî ye Tevgera Goran û ji ber ku yekîneyên wê yên asayîşê pêşî li bûyeran negirtiye YNK'ê bi tûndî rexne kir. Mesrûr Barzanî, êrîşên li dij PDK wek êrîşên plankirî nişan da û got: "Êrîşên li dijî avahiyên PDK'ê yên li Silêmanî, Helebce, Germiyan û Qeledizê, bi plansaziya Tevgera Goran hatine kirin û ji ber ku peşî li êrîşan negirtiye asayîşa Silêmanî jî sucdar in." Barzanî bi bîr xist ku ji ber pêdiviyên parastina van avahiyan bi cih nehaniye yek jê PDK'yî 5 welatiyan jiyana xwe ji dest dane. Barzanî ji malbatên kesên ku jiyana xwe ji dest dane sersaxî xwest û bi taybet ev êrîş, hemû cûre êrîşên bi vî rengî şermezar kirin. Mesrûr Barzanî, bale kêşa ku taybet pişti destpêkiniha şerê li dij DAIŞ'ê li dij endamên PDK'ê êrîşên cihê pek hatine û got: "Divê ev êrîş rawestin. Ger ku ranewestin wê ev yek moral bide DAIŞ'ê û em ê ziyaneke mezin ji van êrîşan bigirin."



li dij DAIŞ'ê de jiyana xwe ji dest dabû, de bêje: "Tu kes nikare PDK û YNK'ê hînî niştimanperweriyê bike" û ji alî Endamê Polîtburoyê Saadî Pîra ve bê redkirin jî, beşek ji nûnerên YNK'ê 'Pergala Rêveberiya Dûalî' pêşniyaz kirin. Ev yek jî bu sedemê gumanên ku wek Tevgera Goran, di nav YNK'ê de jî aliyên ku destên wan di bûyeran de ye hene. Cîgirê Sekreterê Giştî yê YNK'ê Mele Bextiyar, di berdewamiya axaftina xwe de da zanîn ku wan bi hemû partiyan re dest bi hevdîtinan kirî ye, wê hevdîtinên wan bidomin, ew li benda vegera Sekreterê Giştî yê Tevgera Goran Newşîrwan Mistefa ne, piştî ku Newşîrwan Mistefa vegere ew ê ji bo çareserkirina pirsgirêkan hewl bidin û ger ku şaşî hebin jî ew ê bi hevdîtinan hewl bidin ku van şaşiyan sererast bikin. Bextiyar jî di axaftina xwe de da zanîn ku ew ne alîgirên rêveberiya dûalî ne û ew ê li dij vê helwestê bin.

**Goran: Wê şirîktiya me ya hikûmetê bidome**

Ji alî din ve Meclîsa Neteweyî ya Tevgera Goran jî ji roja pêncşemê ve di bin serperiştiya Umer Seyîd Alî ku ji alî Sekreterê Giştî yê Goran Newşîrwan Mistefa ve hatibû erkdarkirin, zincîre civînên dûvûdrêj pêk anî. Di encama van civînên ku êvara îniyê bi dawî bûn de li ser navê meclîsa Goran peyameke nivîskî hate belavkirin. Di vê peyama ku PDK bi zimanekî hişt hate rexnekirin de hate ragihandin ku wê Tevgera Goran şirîkatiya xwe ya hikûmetê bidomîne. Di vê peyama ku bi zimanekî tûnd hatibû nivîsîn de her wiha hate gotin ku Serokatiya Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ji 19'ê Tebaxê ve ne rewa ye.

**Goran Azad: Heta lêpirsîn encam nedin kes nabe gumanbar**

Di derbarê qeyranê, geşedanên li dû wê rû dan û helwesta YNK'ê de Parlamenterê YNK Goran Azad ji BasNûçeyê re nirxandinan kir. Azad anî ziman ku sedemên ku alozî gihîştin vê radeyê zêdebûna hejmara qeyranan û bilindbûna nerazîbûna gel e. Azad got: "Şer, ambargoya darayî ya Bexdayê, û rûdana qeyrana serokatiyê li ser hev kom bûn û ev yek bû sedem ku hemwelatiyên ji bê pereyî bêzar bûne bertekan nîşan bidin. Li gel van qeyranan, piştî ku Serok Parlaman jî ji serokatiyê hate dûrxistin, niha qeyraneke din a Serokatiya Parlamanê jî li qeyranên din zê bû." Di derbarê destwerdana Îran û Tevgera Goran a di rûdanên tûndî de jî Azad anî ziman ku ev angaşt bêtir bi ser çapemeniyê ve hatine rojevê û dom kir: "Di çarçoveya pendên navneteweyî û heta di yên neteweyî de jî, beriya ku tawanbarkirinek bê kirin, divê lêkolîn bê kirin da ku ew tawan bê piştrastkirin û eger ev rêbaz neyê pêkanîn rewş dibe cihê pêkenînê." Goran Azad pêwîstiya lêkolînên bûyeran destnîşan kir û anî ziman ku bêyî lêkolînkirinê tawanbarkirin pêk bê, ev yek wê encamên nebaş derxe holê. Azad cudahiya mafê rewa yê xwepêşandanan û rêbazên tûndwer ji hev veqetand û da zanîn ku bûyerên rû dane neyênîtiya rêbaza tûndiyê li pêş çavan raxistiye û anî ziman ku ew wek YNK, hemû cûre rêbazên tûnd red dikin û alîgirên mafê rewa yê xwepêşandanan in. Li ser jikaravêtina 4 wezîr û Serok Parlaman jî Goran Azad got: "Jikaravêtina van kesan a ji alî Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî, pêkanîneke dijî demokrasiyê ye. Tevgera Goran roja îniyê ragihand ku ew dev ji şirîktiya hikûmetê bernadin. Ji bo çareseriyeke mayînde divê hikûmeta heyî berdewam bike û hemû alî ji bo çareke dinê pêk neyên, ji van rûdanên nebaş sûdê werbigirin."

**Bangên aramiyê li pey hev hatin**

Piştî ku rûdanên tûndî pêk hatin, hem ji aliyên Başûr û perçeyên din ên Kurdistanê û hem jî ji derveyê Kurdistanê bangên aramiyê li pey hev hatin. Cîgirê Sekreterê Giştî yê YNK'ê û Cîgirê Serokê RHK'ê Kusret Resûl di peyama xwe ya di derbarê bûyeran de anî ziman ku ew ê nehêlin ku hêzên veşartî yên dijminên kurd, li Kurdistanê bigihîjin armancên xwe û wê Herêma Kurdistanê bi hemahengî û hesta yekîtiyê van pirsgirêkên xwe çareser bike. Serokê Partiya Demokrat a Sosyalîst a Kurdistanê(PDSK) Mihemedê Hecî Mehmûd, bang li hemû partiyên siyasî kir ku beriya bûyer mezintir bibin li hev bicivin û qeyranan çareser bikin. Parlamanterê Eniya Tirkmen Aydin Marûf jî metirsiya xwe ya di derbarê bûyerên li Qelediza navçeya Silêmanî hanî ziman û bang li partiyan kir ku li ser maseyekê kom bibin.

Ji alî din ve li gel bangên partî, rêxistin û siyasiyên perçeyên din ên Kurdistanê ji cîhanê jî bangên çareserkirina qeyranan hatin. Berdevkê Wezareta Derve ya DYA Mark Toner, partiyên siyasî yên Herêma Kurdistanê hişyar kir ku dijminekî wan ê wek DAIŞ'ê heye û xwest bu ev partî bi hemahengî li dij vî dijminê xwe têbikoşin. Berdevkê Neteweyên Yekgirtî(NY) Stéphane Dujarric jî diyar kir ku ew geşedanên li RHK'ê ji nêz ve dişopînin, bi vê mebestê ew ê nûnerekî xwe bişînin Hewlêrê û piştî raporta vî nûnerê wan ew ê wek NY daxuyaniya xwe ya fermî ragihînin. Rujarric, her wiha anî ziman ku ji ber van rûdanên tûndî ew metirsîdar in û hêvî dikin ku pirsgirêk bi rêbazên diyalogê bêne çareserkirin.



Kalê Badî

# Barzanî: Wê qeyran çareser bibe



Serdana şandeyên Partiya Komarxwazên Amerîka ya bo piştgiriya Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî didome. Di hilbijartina rojên pêş de tê payîn ku Partiya Komarxwaz hilbijartinê de biserkeve. Rayedarên vê partiyê çendîn car daxuyandibûn ku wê piştgiriya serxwebûna Kurdistanê bikin. Ev yek dibe sedemê şiroveyên wek "Piştî Obama yê Demokrat, li gel piştevaniya komarparêzan ew ê serxwebûna Kurdistanê pêkantir dibe."

Di hevdîtina li Ofisa Serokatiyê ya Serokatiyê ya li Silehedînê ya bi Lijneya DYA'yî ya ku ji serkirde û nûnerên Partiya Komarxwazên Kongre û Senatoya DYA'yê pêk hat de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî diyar kir ku qeyrana ku li Kurdistanê rû daye wê bandoreke pir neyînî li Herêma Kurdistanê neke û ew hewl didin ku qeyran tafilê bê çareserkirin. Barzanî, ji ber alîkarîkirina Pêşmerge pêkhanîna hemahingiya navbera wan û hêzên asmanî ji gel û welatê wan re sipasiyên xwe pêşkêş kir û got ku bi saya vê hemahengiya serkeftî, heta niha yek sivîlekî jî jiyana xwe ji dest nedabe, ev serkeftineke mezin aa vê hemahengiyê ye. Barzanî destnîşan kir ku Pêşmergeyên Kurdistanê parasvaniya hemû pêkhateyên olî û nijadî jî dike û nîşaneya vê jî têkşikandina xetereya DAIŞ'ê ye.

## "Divê em li têkoşîna dijî DAIŞ'ê hûr bibin"

Serokê RHK'yê qala aliyê aborî yê qeyrana ku li Kurdistanê rû dayê kir û destnîşan kir ku ji ber ambargoya darayî ya Bexdayê, kêmbûna buhayê neftê û xwespartina bi milyonan penaberan, RHK'ê bi qeyraneke mezin a aborî re rû bi rû maye. Barzanî bang li hemû aliyên siyasî yên Kurdistanê kir û got: "Divê erka sereke ya hemû aliyan ewlehiya neteweyî û têkoşîna li dijî DAIŞ'ê be. Wê ev qeyrana siyasî ya li Kurdistanê teqez bê çareserkirin û em ê destûr nedin ku ev qeyran ziyanê li aramî û ewlehiya Kurdistanê bike."

Di hevdîtina ku Serokwezîrê RHK'ê Nêçîrvan Barzanî, Cîgirê Berê yê Serokwezîrê Iraqê Dr. Ro Nûrî Şawês, Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Fûad Husên û Berpiriyarê Têkiliyên Derve yê RHK'ê Felah Mistefa jî beşdar bûn de Şandeya Amerîkî jî destnîşan kir ku têkoşîna Pêşmergê ya li dijî DAIŞ'ê hêjayî pîrozkirinê ye. Endamên lijneyê her wiha anîn ziman ku ew ji ber geşedanên li Herêma Kurdistanê matmayî mane û ji ber vê yekê ye ku hemû cîhan roleke girîng dide RHK'ê. Lijneyê her wiha ewlehiya RHK'ê û çekdarkirina Pêşmergeyan ji bo DYA grîng nirxand û soza hewldana berewamiya alîkariya pêwîst a li ser vê babetê da.

## "Divê demografya Mûsil'ê bê parastin"

Di hevdîtina Serbalyoza nû ya Swêdê ya li Iraqê Anika Mulian jî Serokê RHK'yê Mesûd Barzanî, di peywira wê ya nû de ji Mulian re serkeftin xwest û ji ber ku di axaftina xwe de gotibû; "Em ê di van rojên dijwar de li cem kurdan bin." bextewariya xwe anî ziman. Di derbarê amadekariyen rizgarkirina Musêl'ê de jî Barzanî metirsiya guhertina demografik a herêma Nînowayê anî ziman û got: "Divê di plansaziya operasyona rizgarkirina Mûsilê de, bi hendaeyî nêzîkî cihêrengiya demografik û olî ya vê herêmê bibin." Barzanî, her wiha pêwîstî bi wê yekê kir ku divê pergala rêveberiya ku we piştî operasyonê bê sazkirin jî li taybetiya demografik ya vê herêmê bigoncive û mafên rewa yên pêkhateyên vê herêmê bêne parastin.

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, di derbarê beşdariya Rûsya ya şerê li Sûriyeyê û bandora wê ya li ser herêmê de jî axivî û destnîşan kir ku divê Rûsya operasyonên xwe li gel hêzên hevpeyman bi hemahengî bimeşîne û got: "Di vê hemahengiyê de divê siberoja Sûriyeyê jî bê dîtin."

Di hevdîtina ku qala qeyrana li RHK'ê rû daye jî hate kirin de Serbalyoza Nû ya Swêdê ya li Iraqê Anika Mulian jî daxwaz kir ku ev qeyran li şerê RHK'ê yê li dij DAIŞ'ê bandoreke neyînî neke û hêvî kir ku qeyran tafilê bê çareserkirin.

## Kerkûkî: Destdirêjiya Kerkûkê ji Heşdî Şabî zedetir e

Milîşeyên Şia Heşdî Şabî yên ku ji destpêka têkoşîna li dijî DAIŞ'ê û vir ve rikberiya RHK'ê dike û ji ber hewldanên xwe yên neyênî yên li Kerkûk û Şengalê bûbûn armanca bertekên RHK'ê, bi ser Serokwezîrê Iraqê Haydar Îbadî, ji bo Kerkûkê gef li kurdan xwarin. Milîşeyên Heşdî Şabî, bi ser malpera xwe ya înternetê ji Îbadî re peyamek şandin û gotin ku 'Ger hûn Kerkûkê ji dest Kurdan dernexin, em ê bixwe Kerkûkê ji kurdan bistînin.'Piştî vê gefê bersiveke tund ji Pêşmerge hat. Fermandarê Pêşmerge yê Eniya Rojavayê Kerkûkê û Serokê Berê yê Parlamana Kurdistanê Dr. Kemal Kerkûkî bi zimanekî tûnd ew hişyar kirin û got: "Ji wan zêdetir e ku zimandirêjiya axa Kurdistanê bikin." Kerkûkî lawaziya Milîşeyên Heşdî Şabî ya li hember DAIŞ'ê wek nimûne nîşan da û dom kir: "Ji dest wan tê bila ev milîşe biçin gundewar û navçeyên Bexdayê yên ku di dest DAIŞ'ê de ne rizgar bikin. Devavêtina axa Kurdistanê û bi taybet Kerkûkê karê wan nîne û ji wan zêdetir e. Bila zanibin ku xwediyekî Kerkûkê heye."

Fermandarê Pêşmerge yê Rojavayê Kerkûkê Dr. Kemal Kerkûkî, anî ziman ku dema DAIŞ'ê êrîşî Kerkûkê kiriye, ev milîşeyên Heşdî Şabî çekên xwe li dû xwe hiştine û reviyane û got: "A balkêş ew e ku piştî Pêşmerge pêşî li pêşveçûnên DAIŞ'ê girt, ev milîşe, di şûna DAIŞ'ê de çav berdan Kurdistanê. Pêşmerge beyî ku di nav pêkhateyên olî û neteweyî yên Kerkûkê cihêtiyê bike, hemûyan diparêze û wê her biparêze. Pêşniyaza min li wan ew e ku bila pêşî axên ereb ên ku di bin dagirkeriya DAIŞ'ê de ne rizgar bikin.





# Hêzên kurd li ber deriyê Reqqa'yê ne



**Mehmet Salih Batırhan**

Operasyonên DYA'yê yên Rojhilata Navîn û bi taybetî yên li hember DAIŞ'ê dane destpêkirin bi encam nebûn. Biserneketina DYA'yê bû sedema wê yekê ku Rûsya û Îran jî beşdarî wan operasyonan bibin. Beşdariya operasyonên Rûsya'yê û Îran'ê bû sedem ku qeyranake nû li herêmê dest pê bikin. Her wiha bi hewldanên Rûsya û Îran'ê Mîhwera Şia ya ji Irak, Îran, Sûriye'yê û Hizbûllaha Lûbnan'ê pêk hatiye li herêmê bû xwedî roleke giring. Wisa tê payîn ku ew ê ev hêz tesîrê li siberoja Rojhilata Navîn bikin. Li gel tiifaqê wan hêzên li Şam û Bexdayê navendên operasyonên leşkeri jî ava kirin. DYA'yê ya ku zêdetîrî du sala ye di nava wê hewldanê deye ku li Mûsilê li hember DAIŞ'ê dest bi operasyonan bike dev ji operasyonan berda ye û ew ê li Reqqa'yê li hember DAIŞ'ê dest bi operasyoneke mezin bike. Li hêla din hat zanîn ku ew ê hêza sereke ya operasyona Reqqa'yê hêzên kurd bin û ew hêzên kurd ê DYA'yê piştevaniya wan dike yekîneyên xwe ber bi Reqqa'yê ve şandine. Her wiha hat zanîn ku DYA'yê li ji bo hêzên kurd 50 ton çek û taqemenî şandine. Bi şandina wan taqemeniyan jî wisa hat xuyakirin ku ew ê operasyon di demeke kurt de dest pê bike. Li hêla din hat zanîn ku koordinasyon di navbera Rêveberiya Herêma Kurdistanê û PYD'ê de hatiye duristkirin ku Pêşmergeyên Roj yên Kurdistanê derbasî Rojava bibin. Her wiha hat zanîn ku di vê çarçoveyê de fermandariya Pêşmergeyan û rayedarên DYA'yê bi YPG'ê re danûstendinan dikin.

**Salih Mûslîm: Amadekariyên operasyona Reqqa'yê tên kirin**

Hevserokê PYD'ê Salih Mûslîm li ser operasyona Reqqa'yê û piştevaniya DYA'yê ya li kurdan rawestiya û bi ji çapemeniyê re axivî. Mûslîm amaje bi wê yekê kir ku DYA'yê ji bo operasyona Reqqa'yê 50 ton çek û taqemenî şandiye. Di berdewamiya axaftina xwe jî de Mûslîm amaje bi wê yekê kir ku ew hêzen ku ew ê beşdarî operasyona Reqqa'yê bibin navê xwe kirine "Hêzên Demokratîk ê Sûriye'ye" û ew ê di kurtedemekê de dest bi operasyonan bikin. Mûslîm bal kişand ser operasyonê û wiha berdewam kir: "Ew hêza ku beriya niha di nava Artêşa Azad de coh digirt Ceyş el Siwar, Burkan el Ferad, yekîneyên weke El Sanadid û YPG di bin sîwaneke de li hev kom bûn. Navê wan jî Hêzên Demokratîk ê Sûriye'yê ye. Ev hêz amadekariyên Reqqa'yê dikin. Alîkariya çekan jî li van hêzên hatiye kirin."

Demeke dirêj e operasyonên amadekariyên Reqqa'yê tê kirin. Her wiha tê zanîn ku ew ê Pêşmergeyên Rojava jî beşdarî vê operasyonê bibin.

**Operasyonên hevpar yên Şam - Hizbûllah – Îran û Moskova'yê**

Li hêla din milîşeyên Hîzbûllahê, leşkerên Îranê, artêşa Sûriye'yê li Helebê dest bi operasyoneke nû kirin. Her wiha hat zanîn Rûsya jî bi bordûmanan beşdarî operasyonan dibin. Li gor zanyariyên ji herêmê hatine wergirtin komên tûndrew gelek wendahî dane û ji herêmê derdikevin. Navenda Çavdêriya Mafê Mirovan a Sûriye'yê jî daxuyand ku di encama borduman û operasyona hevpar de 72 kes hatine kuştin û ji van kuştiyan 32 kes jin in. Her wiha hat zanîn ku rejima Sûriye'yê operasyonên xwe li derdora Helebê zêde kirine. Li gor daxuyaniya navendê hêzên rejima Sûriye'yê li derdora Helebê gundek ji komên çekdar stendine û ew gund azad kirine. Her wiha hat zanîn ku di encama wê operasyonê jî de 17 endamên rêxistinan mirine û rejimê jî 8 wendahî dane. Her wiha çavkaniyên agahdar didin zanîn ku bi piştevaniya Rûsya'yê ew ê li derdora bajarê Deraa ya ku nêzîkî Ûrdûnê ye operasyon berfirehtir bibin. Li hêla din hat zanîn ku komên tûndrew ê ku ji ber operasyonên hewayî yên Rûsya'yê û operasyonên bejayî yên Artêşa Sûriye'yê şikestin xwarine derbasî Tirkiyê dibin.

**"Rûsya dixwaze bi PYD'ê re kar bike"**

Rojnamger û nivîskarê li Moskova'yê Misto Sîno ji li ser operasyonê Rûsya'yê re rawestiya û j Bas Nûçe'yê re axivî. Sîno amaje bi wê yekê kir ku Rûsya nû nehatiye herêm û ji zûdeye li herêmê ye. Her wiha Sîno amaje bi wê yekê kir ku ji ber operasyonên lawaz ê DYA'yê û koalisyona navdewletî Rûsya gihiştiye wê encamê ku divê ew jî li hêza xwe nişan bide û ew derfeta bikaraniye. Sîno her wiha daxuyand ku ew ê Rûsya û Îran ew ê gorankariyeke mezin li herêmê bikin û wan herdu hêzên derfet peyda kirine. Li hêla din tê zanîn ku Îran jî amadekariyan dike ku leşkeran bişîne Sûriye'yê û bi awayekî çalak derbasî Sûriye'yê bibe.

Di berdewamiya axaftina xwe de Sîno li ser peywendiyên Rûsya û PYD'ê jî rawestiya û daxuyand ku ew PYD hem bi Rûsya'yê re hem jî bi DYA'yê re di nava peywendiyê deye û siyaseteke bi balans birêve dibe. Sîno amaje bi wê yekê jî kir ku hemahengi di navbera hêzên kurd û Rûsya'yê de heye û ew ê hêzên kurd derdora Lazkiyê, Cerablûs û Azazê ji komên tûndrew bistînin. Her wiha Sîno bal kişand ser operasyonên bi serperiştiya DYA'yê yên li Reqqa'yê ew ê bên kirin jî û wiha axivî: "Hamleyên Rûsya û Îran'ê jî li hember hamleyên DYA'yê hene. Derdora paqijiya Lazkiyê û Hûmûsê dest pê kiriye. Rûsya niha bi mebesta rê vekirina di navbera Deryaspî û Şam'ê de operasyonên xwe zêde kirine." Sîno di berdewamiya axaftina xwe jî de eşkere kir ku ew ê serdemeke nû li Rojhilata Navîn pêk were û ew ê ew yek tesîrê li kurdan jî bike.

**Rêxistinê Mafê Mirovan a Navnetewî: Êrîş li ser wargehên sivîlan heye**

Li hêla din Hevseroka Meclîsa Zagonsaz a Kobanê Fewziya Evdo jî li hember rapora Rêxistinê Mafê Mirovan a Navnetewî ya di derbarê PYD'ê û YPG'ê de hatibû amadekirin de rawestiya û bertek nîşanî wê raporê da. Evdo amaje bi wê yekê kir ku ew rapor ne rast e û pêkhateyên Rojava di navbera aştiyê de bi hevre dijîn û ew rapor rastiyê nişan nade. Di berdewamiya axaftina xwe de Evdo ragihand ku ew kesên xêrnexwazên Rojava ji rêxistinê re axivî ne. Her wiha Evdo amaje bi wê yekê kir ku hemû kes dizane YPG pêkhateyên li Rojava diparêze. Li hêla din Evdo daxuyand ku belavbûna rapora Rêxistinê Mafê Mirovan a Navnetewî watedar e. Li gor rapora Rêxistinê Mafê Mirovan a Navnetewî di encama operasyonên DYA'yê de gelek kesên sivîl mirine û YPG'ê jî cih û warên xelkên sivîl rûxandine.



Faysal Dağlı



## Li bin sîbera dîrokê Rûsya û Başûrê Kurdistanê

# Pravda: Qetlîamên kîmyewî derew a Amerîka ye

Kurdên Başûr yekem car di destpêka Şerê Cîhanê yê Yekem de Rûsya'yê nasdikin! Artêşa Rûs di salên 1916 û 17'an de hemû xaka Rojhilatê Kurdistanê û gelek bajarên Başûrê Kurdistanê dagir kiribû. Kurdên Başûr di bin bandora Osmaniyan de li dijî dagira Rûsan berxwedabûn. Ji bo vê yekê Artêşa Rûs kurdan ceza kir û gelek bajar û gundên Kurdistanê şewitandin. Piştî Şoreşa Îlonê Rûsya ji hemû Kurdistanê vekişiya û li heremê serdestiya Brîtanya destpêkir. Serokê kurdên Başûr ê demê Şêx Mehmûdê Berzencî ji bo alîkariya Bolşewîkan ji Lenin re nameyekî nivîsandibû. Berzenci di nameya xwe ya ku di sala 1923'an de wiha digot:

"Hemû cîhan dengê azadiya şoreşa 1917'an bihîst. Cîhan hemû kêfxweş bû ku netewa we ji dîktatoriya zaliman filitî. Kurdan jî, di şerê xwe yê ku mazlûmun, destê xwe dirêjî we kirine. Bi can û dil daxwaza xwe ya birayetiyê pêşkeşî we dikin û daxwaz dikin ku bi we re bijîn. Em bawer dikin ku, parastvanên gelên bindest hikumeta Sovyet'ê wê netewa kurd jî biparêze. Kurd ji bo ku bi we re têkilî deynin bê sebir in."

Lê ew name ya Şêx Mehmûd bersîv nedît. Lewra Sovyet'ê wê demê ketibû derdê xwe. Bi vî awayî demekî dirêj heta salên şerê dûyem di navbera kurdên Başûr û Moskova'yê de têkilî peyda nebûn.

Artêşa Sor ya Sovyet'ê û Brîtanya dema şerê dûyem ku Îran'ê dagir kirin, kurdan li jêr serokatiya Qazî Mihemed li Mahabad û derdorê komarekî avakirin.

Di heman demê de Mele Mistefa Barzanî di sala 1943'an de jî sirgûna Silêmanî berê xwe da Barzan û dest bi serhilanekî nûh kir. Artêşa ereb tevî balafirên Brîtanya êrişê gundên kurdan dikirin û sivîlan dikujtin. Barzanî naçar ma ku tevî eşîr û şerwanên xwe berê xwe da Rojhilatê Kurdistanê.

Beriya rêvîngiya Rojhilat, Mele Mistefa bi nabençîtiya serbazên kurd û endamên rêxistina Hîwa Mistafa Xoşnaw û Îzed Ezîz serî dabû Sovyet'ê û li dijî îngîlîzan ji bo avakirina Kurdistaneke serbixwe alîkarî xwestibû. Nûnerên Barzanî li Tebriz'ê di nexweşxane ya Sovyet'ê de bi Dr. Samedof re ketibûn têkiliyê lê ji Sovyet'ê bersivekî erênî nestendi bûn.

Piştî Barzanî gihîştin Mahabadê, ew li vir tevî çend eşîrên Rojhilat parastina Komara Mahabadê hildan ser milên xwe. Serkirdayetiya Komara Kurdistanê Barzanî bi rutbeya general wek fermandarê hêzên parastina dewletê tayîn kiribû. Di vê pêvajoyê de têkiliya Barzanî bi rayedarên Sovyetê re geş bûbû.

**Penaberiya Sovyetê ya Barzaniyan**

Piştî ku Artêşa Sor di sala 1947'an de ji Îran'ê vekişiya leşkerên Şah û hêzên îngilîz ketin Kurdistanê. Serkirdên komarê ji bo gel zirar nebîne teslîm bûn. Barzaniyan çek dananîn û ber xwe dan. Sivîlên Barzanî careke din berê xwe dan Başûrê Kurdistanê, Peşmerge bi artêşa Şah re ketin şerekî dijwar. Mele Mistefa û 500 şerwanên wî piştî ku eşîra xwe derbasî nav sînorên Îraq'ê kirin, dest bi meşeke dirêj kirin. 52 roj bi sedan kilometre meşiyan. Li pey wan 10 hezar leşkerên Şah, bi sedan tank û balafirên Brîtanya hebûn. Barzaniyan dixwest xwe bigîjînin Sovyet'ê.

Şahidê demê Peşmerge Mustafa Hadî di sala 1993'an de li Hewlêr'ê derbarê serpêhatiya Barzaniyan ya meşa dirêj ji min re wiha digot:

"Ew rêwîngî ji bo me wek rêya mirinê bû. Li ser rêya me çiyayên ku bi kîlometreyan latên wan hebûn. Me di nav wan çiyayan de bi xenceran pêlik çêdikir û em dimeşiyan. Me ji lûtkeyên çiyayê Çerçela Herkiya bi rêya wan pêlikan derbaskir. Lûtkeyê çiyayan berf bû. Derfeta meşê tûnebû. Me bi kêra û bi singûyan cîhê lingên xwe çêdikir û em wiha dimeşiyan. Me şer dikir û em dimeşiyan. Li ser qayişê tifêngên me kêç rêz bûbûn. Me tenê genimê hişk dixwar. Di van şerên giran de 4 hevalên me şehîd ketin. Bi sedan sîlehên dijmin ketin destên me. Şah dîn bûbû. Piştî kı em gihîştin ber keviyên Arasê Rûsan me sê roj li wir birçî dane sekinandin. Paşê destûr dan ku em ji sînore wan derabasî bibin."

Barzanî û 500 hevalên wî li Sovyet'ê 12 sal man. Heta mirina Stalîn ew wek dîl jiyan. Sovyet'ê wan li Nahçîwan, Azarbaycan û Ozbekistan'ê belavkiribû. Serokê Komara Azarbaycanê, Mir Cafer Bakirov û Serokê Ozbekistanê Osman Yusufov, Tûranîst bûn û herdûyan jî ji kurdan nefretê dikirin. Şerwanên kurd 5 sal wek koleyan di kolhozan de xebitandin. Mele Mistefa Barzanî li Derya Hazarê sirgûnê giravekî kiribûn. Haya kesî jê nemabû. Pêşmergeyan jî li bajaran kom bi kom belavkiribûn. Çûn û hatina wan qedexe bû.

Piştî çend çalakiyên rûniştin û rojiya birçîbûnê dû sal şûnde Mele Mistefa nîşanê wan dan. KGB dor li wan girtibû. Dest dida ser name û telgrafên wan. Nedihişt kes ji wan xwe bigîjîne Moskova'yê.

Piştî mirina Stalîn li Sovyet'ê zexta ser penaberên kurd sistbû. Bakirov û Yusufov jî, ji alî hikûmeta nûh ve, wek hevparên tawanên Stalîn, hatin kuştin. Barzanî bi dizî xwe gihand Moskova'yê. Heta hikûmet wî qebûl bike li ber deriyê Kremlîn'ê sê roj rûnişt. Piştî sê rojan ew qebûl kirin. Serokê Sovyet'ê yê nûh Kuroşow sozê başkirina rewşa wan da. Paşê derfert dan şerwanên kurd ku herin dibistanên ziman û zanîngehan û tiştên ku dixwazin bikin. Barzanî li Moskova'yê bi cîh kirin û otomobîlekî dan wî. Mele Mistefa li vir xelata akamediya leşkerî jî girt.

Kurdên Başûr dest bi serdana Sovyet'ê kiribûn. Têkiliyên kurdan û Sovyet'ê baş bûbû. Di sala 1957'an de bi serokatiya Celal Talabanî şandekî Partiya Demokratên Kurdistanê, ji bo tevlî Kongreya Navnetewî ya Xendevan û Xortan bibe hat Moskova'yê.

Mele Mistafa Barzanî heta 1958'an li Sovyet'ê ma. Di sala 1958'an li Îraqê General Evdilkerîm Qasim li dijî rejima mîr ku piştgirê Brîtanya bû darbeyekî leşkerî kir û li Îraq'ê pevajoyekî nûh destpêkir. Qasim ji bo desthilatdariya xwe zixm bike muhtacê alîkariya Sovyet'ê û ya kurdan bû. Ji bo vê yekê li Melle Mistefa yê ku li Moskova'yê ye banga vegerê kir. Barzanî li ser vê yekê vegeriya welat. Piştre jî ew 500 Peşmergeyên ku bi wî re çûbûn Sovyet'ê vegeriyan.

Sê salên pêşîn nerm derbas bû. Kurd gihîştin gelek mafên xwe. Di makezagona demkî de welheviya kurd û ereban hatibû teyîdkirin. Rojnameyên wek Xebat, Hetaw, Jîn û Dengê Kurd dest bi weşanê kiribûn. PDK wek partiyek legal li gelek bajaran şaxan vekiribû. Lê vê rewşê dirêj najot. Piştî ku General Qasim raqîbên xwe, yanê Hizba Şûi û Nasirîstan tasfiye kir berê xwe da kurdan jî. Ji ber dijberiya wî bi îngîlîzan re, Sovyet'ê alîkariya rejima Qasim dikir. Barzanî di mijdara 1960'an de çû Sovyet'ê û daxwaz kir ku, Kremlîn ber li Qasim bigre. Lê zêdetirê nesîhetan tiştek nebihîst.

**Di şerê sar de kurd û rûs**

Piştî şerê cîhanê êdî dengêyên nûh jî runiştibûn. Şerê cepheyan cîhê xwe dabû şerê sar. Hêzên heremî her yek ji xwe re li derdora patronekî cîhanî kombûbûn. An Amerîka, an jî Sovyet!

Di vê navberê de li Kurdistanê şerê di kemînê de di 11'ê Îlona 1961'an de qewimî. Herçend Sovyet'ê alîkariya rejima Bexda'yê dikir jî, bi wan ewle nîn bû. Lewra Baasi'yan di derbeya 1963'an de berî ku êrişê kurdan bikin, Hizba Şûî, yanê Partiya Komunîstên Îraq'ê pakij kiribûn. Di qatlîama Baas'ê de bi sedan komunîstên hevkarên Moskova'yê hatibûn kuştin. Yên mayî xwe sipartibûn çiyayên Kurdistanê. Pirên navbera Baas û Moskova'yê hilweşiya bû. Rojname ya 'Pravda' ya dengê Moskova'yê dest bi nivîsên ku girîngiya yekîtiya navbera dijberên Bexda'yê kiribû. Pravda ji ber ku Îbrahim Ehmed û Celal Talabanî ji PDK'ê veqetiya bûn, di nusxa ya 18 Tebaxa 1964'an de li navboriyan rexneyên tund dikir. Moskova'yê heta pirsgirêkên navxweyî yê kurdan jî dişopand. Kurd êdî wek hevkar û dostên Moskova'yê dihatin liqelam dan! Hizba Şûî, hîn li bin sîwana Barzanî bû.

Moxolîstan a bra biçûkê Sovyet'ê li ser



daxwaza Moskowa'yê di gulana 1963'an de li Netewên Yekbûyî de pirsa Kurdistan anî ziman. Moskova'yê ji tirsa hevkarên xwe yên ereb, agirê Kurdistanê bi maşikê girtibû destên xwe. Sovyet'ê ji bo vê yekê dosya ya Kurdistanê dabû destê berpirsê Moxol û jê xwestibû ku ew, pirsa Kurdistanê bîne ziman. Bexda'yê jî bi rêya General Cemal Evdilnasir ê Serokê Misirê li dijî hewldana Sovyet'ê derdiket. Moxolan ev pêşniyara xwe dîsa bi daxwaza Sovyet'ê çar meh şûnde paşve kişandin.

General Evdilselam Arif di mijdara 1963'an de li Bexda'yê di encama derbeyeke leşkerî de hat ser hikum. Generalê nû jî bi Barzanî re rûnişt û bi kurdan re aşt bû, soz dabû ku wê mafê kurdan yên rewa li wan vegerîne. General Evdilselam têkiliya xwe bi Sovyet'ê re jî xweş kiribû. Kuroşov, peymana navbera Arif û Barzanî wek 'bûyerekî ku wê îtîbara Iraq'ê bilind bike' dinirxand. Bi navbenkariya Cemal Evdilnasir careke din çekên Sovyet'ê gihîştin Bexda'yê.

**Têkiliyên veşartî**

Lê rayedarên Moskova'yê ji Baas'ê ne ewle bûn. Ji ber vê yekê bi dizî alîkariya Barzanî jî dikirin. Ji sala 1958'ê ta sala 1972'an her sal 50 hezar Dînar û çek didan hêzên Mele Mistefa. Ev têkiliya Barzanî û Sovyet'ê bi navbenkariya jineke rûs ku li balyozxane ya Sovyet'ê ya Bexda'yê dixebitî, dimeşiya. Mêrê wê jina rûs pêşmergeyekî kurd bû.

Piştî ku di sala 1961'an de şerê çekdarî destpêkir û demên ku pêşmerge diketin rewşeke xirab jî balafirên rûs bi paraşûtan cepxane, lojîstik û çek davêtin ser meqerên Mele Mistefa. Balafirên Sovyet'ê barên xwe li herema Xakurk'ê li sêgoşeya sînorê Tirkiyê, Îran û Iraq'ê valadikirin.

Li Tahran'ê jî noqteyek têkiliya Sovyet'ê û Barzanî hebû. Li nexweşxaneyeke Tahran'ê KGB'ê bi welatparêzên kurd re têkilî datanî û bi rêya wan alîkarî digihand Barzanî. Partiya Komunîstên Iraq'ê jî di van operasyonan de rol dilîst. Kurdekî ku di van operasyonan de cîh girtiye dibêje, di sala 1964'an de wî li Nexweşxaneyeke Tahran'ê ji karmedên KGB'ê mîlyonekî dolar sitendiye û ev pere gihandiye partiyê.

Di sala 1968'an de rejima Bexda'yê careke din guherî bû. Moskova û Bexda hîn jî nêzîkî hev bûbûn. Ji ber tehdîda Şah ê dostê Amerîka, Bexda di bin baskê Sovyet'ê de li ewlekariyê geriya. Dostaniya dema nû bêsînor bû. Ji Moskova'yê bi mîlyar doloran kredî û bi dehan fabrîka ji Iraq'ê re hat verêkirin. Çek û amojgerên leşkerî yên Sovyet'ê jî bûbûn perçeyekî ji jiyana Iraq'ê. Di sala 1970'an de li Iraq'ê di nav kurd û ereban de peymana otonomiyê hat îmzekirin. Piştî vê peymanê li Kurdistan'ê 4 sal bê şer û pevçûn sekinî. Di vê pêvajoyê de, di sala 1972'an de Wezîrê Karê Derve yê Sovyet'ê Kosîgîn û Serokê Iraq'ê Hasan El Bekir, 'peymana dostaniyê' ya Moskova û Bexda'yê morkirin. Sala din jî di navbera Hizba Şûî û Baas'ê de jî peymana, 'Bere ya pêşkeftina netewî' hatibû lidarxistin. Li gor vê peymanê ger ji aliyan yek têkeve şerekî, aliyê din wê sînorê hevkarê xwe biparêze. Yanê Iraq têkeve şer, wê Sovyet alîkariya Iraq'ê bike. Yanê eger di navbera kurd û ereban de şer derkeve, wê Sovyet'ê alîkariya Baas'ê bikira. Wiha jî bû. Dîsa li gor peymanê Sovyet'ê wê çek û ji bo bikaranîna wan çekan teknîsyenan bidana Iraq'ê. Di sala 1973'an de Baas'ê, Hizba Şûî jî tevlî hikûmetê kir û wan û kurdan berî hevûdû dan. Di şerê kurd û şûî'yan de bi sedan kes hatin kuştin. Hizba Şuî, piştî ku bi Baas'ê e re peyman çêkir, tevgera kurd bi piştgiriya emperyalizmê tawanbar kir. Lê dîlana wan bi Saddam re heta 1979'an ajot. Dîsa xwe sipartin bin siya lûleyên Pêşmergeyan. Hizba Şûî di sala 1982'an de neçar tevlî CUD'ê bû ku ji aliyê hêzên dijberê Baas'ê ve hatibû damezrandin.



Barzanî û 500 hevalên wî li Sovyet'ê 12 sal man. Heta mirina Stalîn ew wek dîl jiyan. Sovyet'ê wan li Nahçîwan, Azarbaycan û Ozbekistan'ê belavkiribû. Serokê Komara Azarbaycanê, Mir Cafer Bakirov û Serokê Ozbekistanê Osman Yusufov, Tûranîst bûn û herdûyan jî ji kurdan nefretê dikirin.

Di sala 1974'an de desthilata Baas li ser soz û biryarên xwe nesekinî û cardin di nav ereb û kurdan de şer destpêkir. Kurdistan êdî bi balafirên Mig û Ilyuşinên Sovyet'ê dihat bombekirin. Saddam di destpêka şer de çû Moskova'yê. Li gor daxuyaniyên fermî Brejnev ji Saddam xwest ku ew ji bo mafên kurda nebe asteng û hebûna wan a netewî înkar neke. Dîktatorê Bexda'yê wek beriya yê xwe soz dabû ku ew ê li ber mafên kurda nebe asteng. Lê tiştê dizanibû jî kir. Li Cezayîr'ê hinek xak û tawîzên din dabû Şah'ê Îran'ê. Şah jî diyêya bû rêya alîkariya Amerîka'yê ya bo kurdan ku ji ser Îran'ê ve digihîşt Kurdistanê bigre. Encam jî wiha çêbû. Alîkariya Sovyet, Amerîka û Îran'ê bihevre hat qutkirin. Hêzen kurd, piştî ku çend mehan ber xwe da, pelişî.

**"Her tişt ji bo Sovyet'ê"**

Jî bo Kremlîn'ê prensîba sereke "her tişt ji bo Sovyet'ê ye" bû. Sovyet'ê li beramber Kurdan her siyaseta dewleta mezin meşandiye. Li gor vê siyasetê Moskova'yê bi dewletên serdest re navbera xwe xera nekiriye. Demên ku alîkariya kurdan kiriye jî ev yek ji bo gihandina armancên xwe yên li ser wê dewletê bûye.

Moskova hertim bi tevgera kurd re qanalekî têkiliyê vekiriyê hiştiye ku ew bi hemû aliyan xwe nesipêrîn Amerîka an jî dewleteke din. Lê gerek alîkariya Sovyet'ê gerek jî yê dewletên din, ji bo encam stendinê nîn bû. Wan duxwest ku kurd nebin dijminê wan, û bi qasî berjewendiyên wan berxwe bidin. Yanê ji bo siyaseta wan li ser Bexda'yê bibin zextekî. Qêrînên kurdên mazlûm ji dîwarên qalind yên Kremlînê derbas nedihat bihîstin.

Rola Sovyet'ê di salên dawîn de ji bo kurdên Başûr, bû sebebê qetlîaman jî. Li gor YNK'ê, çekên kîmyewî yên ku li Kurdistanê dihatin hilberîn, di bin çavderiya teknîsyenên Sovyet'ê de hatibûn îmalkirin. Govareke YNK'ê di sala 1988'an de, navê 30 teknîsyenên Sovyet'ê yên ku di tesîsên Iraq'ê yên jahrên kîmyewî de dixebitin eşkere kir. YNK'ê ji Moskova'yê daxwaz dikir ku ew nebin şirîkê hovîtiya dijî kurdan. Lê Moskova'yê paastina rejima Bexda'yê domand. Rojname ya Pravda ku weşana Partiya Komunîsta Sovyet'ê bû, piştî Komkujiya Helebce'yê di 11 Îlon a 1988'an de, digot, "Iraq çekên kîmyewî bikar nayne û ev iddîa derewên Amerîka'yê ye."

Lê belê Wezîrê Parastina Iraq'ê Xeyrulah Tewfik, piştî gotinên Pravda'yê çar roj şûnde, Kremlîn'ê diderewand û wiha got: "Çekên kîmyewî bên îmalkirin, elbet wê bên bikaranîn jî."

Di salên şer de ku rejima Iraq'ê li hember Îran'ê têk diçû, Sovyet'ê dixwest bi saya Hizba Şûî ya endamê CUD'ê, êrişên Pêşmergeyên kurd bide sekinandin û rejima Bexda'yê rizgar bike. Hizba Şûî ji li gor talîmatên Moskova'yê, ji partiyên kurd daxwaz dikir ku şerê çekdarî li dijî Iraq'ê rawestînin.

Dîsa li gor Celal Talabanî di vê pêvajoyê de Moskova'yê li Bexda'yê şîret dikir ku mafên otonomiyê bidin kurdan. Rojnama Izwestiya ji bo dîdarên Talabanî û Saddam nivîsên pozîtif diweşand. Lê Iraq'ê li dijî meleyên Tahran'ê ji Amerîka jî çek distend û bi zexta Enqere yê, pêşniyazên Sovyet'ê red dikir. Di şerê Îran û Iraq'ê de, Sovyet'ê herçend rasterast alîkariya Saddam nekir jî, bi rêya Polanya, Çekoslowakya û peykên xwe yê din çek difrot Bexda'yê.

Tu hewceyê gotinan nîn bû. Li serê çiyayên Kurdistanê û li kolanên gundên şewitandî perçeyê bombayên rûsî wek rûreşiyekî Kremlîn'ê ji kurdan re mabû yadaştekî.

Piştî ku Gorbaçov hat ser textê Kremlîn'ê navbera Iraq û Sovyet'ê xera bû. Qirediya Saddam li Moskova'yê hat birrîn. Saddam bi vê hêrsê piştigiriya derbeya dijî Gorbaçov kir û piştevaniya xwe bo darbekaran îlan kir. Gorbaçov jî paşê wî bi hevalbendiya teroristan tewanbar kir. Bi vî awayî têkiliyên herdû rejiman xerab bû.

Niha, di dawiya sala 2015'an de siyaseta Sovyet'ê careke din di bin kirasê Rûsya'yê vegeriya heremê û balkêşê vê carê jî bi Îran, Iraq û Sûriye'yê re Pakta Bexda'yê didamezirîne. Hevkarê sereke yê Moskova'yê Îran, bi destê maryonetên nav siyaseta kurd, demokrasiya Kurdistan'ê têk dibe û kolanên welatê kurdan disotîne, li parlamena wan 'darbeyên yasayî' pêk tîne. Dûberekirina komediya têkiliyên rûs-kurd vê carê wê bibe trajedî, emê bibînin!





## Prof. Abbas Valî:

# Wê Esad êrîşî kurdan bike

**Eger Sûriye li Şamê dîsa bibe dewleteke mezhebî ew ê êrîşî kurdan bike. Di siberojê de ew ê peywendiyên kurdan bi Rûsya, DYA'yê û YE û NY re çawa be diyar nîne. Lê belê divê kurd baş zanibin ku eger kurd tûşî mûşkileyê bibin ew karesateke mezin pêk were. Her tim wisa bûye. Dewletên mezin jî piştevaniya rêvebirên etnîkî û netewî nakin ew piştevaniya dewletên navendî dikin. Sûriye'yê endamê welatên Yekîtiya Ereba ye.**

Siwar Bedirxan

Rûdan û geşedanên di sala 2011'an de li gelek welatan li hember desthilatdar û dîktatorên Rojhilata Navîn dest pê kirin pêl bi pêl berdewam dikin. Herî dawî Rûsya jî beşdarî wê qeyranê bû û li hember komên tûndrew şer da destpêkirin û êrişên baregehên wan kir. Bombardûmana Rûsya'yê ya li Sûriye'yê ev demeke dirêj e di rojeva cihanê de cih digre. Prof. Dr. Abbas Valî jî BasNûçe'yê re axivî û geşedanên dawî yên li Rojhilata Navîn û operasyonên Rûsya'yê şîrove kir. Her wiha Valî li ser qeyrana RHK'ê û rewşa Rojava jî rawestiya û amaje bi wê yekê kir ku eger Beşar Esad bi hêz bibe ew ê êrîşî kurdan bike û ji kurdan re arîşeyan dûrist bike.

**Demeke dirêj e Îran li Rojhilata Navîn belav dibe û gelek peytaxtên welatên heremê di bin kontrola Tahran'ê de ne. Piştî tevlîbûna Rûsya û Îranê ya şerê Sûriye'yê tê payîn ku êdî li Rojhilata Navîn "Mîhwera Şîe" bûye xwedî xwedî hêzeke mezin. Ew mihwer çawa wisa bi hêz bû û ew ê çi guhertinê li Rojhilata Navîn bike?**

Mîhwera Şîe, li Tahran'ê dest pê dike û diçe heta Sûriye'yê û başûrê Lûbnanê. Her wiha diçe Bexdayê û dîsa diçe Tahranê û ji wir jî ew digihê ser Moskova'yê. Geşedan û rûdanên nû ji me re eşkere dikin ku ew siyaseta bi balans a li Rojhilata Navîn diguhere. Êrîşên Rûsya'yê yên ser Sûriye'yê jî wê yekê tekez dikin. Îran jî bi awayekî çalak di nava vî karî deye û Îran û Rûsya di nava wê helkeftê dene balanseke nû balanseke din ya ku niha li Sûriye'yê heye DYA'yê û çend welatên Rojhilata Navîn in. Ew welat jî Tirkiye ye, Qeter e, Siûdî Erebîstan e. Navenda van balansan Sûriye'ye. Sûriye bûye navenda nakokî û aloziyeke giştî. Qeyrana Sûriye'yê jî weke ya Iraqê bû qeyrana Sûriye'yê qeyraneke taybetî bû. Bi Bihara Erebî dest pê kir. Cudahiyeke mezin di navbera qeyrana Sûriye, Misir, Tûnûs, Yemen û Lîbyayê de heye. Gelê wan welatan, li welatê xwe li hember desthilatdariyan derketin û ew meşru nedidîtin. Me bi çavên sere xwe dît bê ka çi li wir çêbûn. Lê belê qeyrana Sûriye'yê û Iraqê cuda ne. Ew bûn herêmî û navdewletî. Ew qeyranên siyasî di heman demê de bûn qeyranên desthilatdariyên siyasî jî. Rûsya û Îran'ê ew yek baş fêm kirin û li hember wê yekê rawestiyan. Iraq dimîne yan ji nav diçe? Sûriye diçe yan dimîne? Rûsya'yê û Îran'ê zanîbûn û gihiştin wê fikrê ku ew ê guhertin pêk werin. Bi hemû hêza welatên xwe û bi hêza hikûmetên xwe beşdarî li piştevaniya Esad kirin.

**Rûsya çima tevlî vê aloziyê bû?**

Sedemê beşdariya Rûsya'yê ya şerê li hember DAIŞ'ê jî ew bû ku DYA'yê zêdetir ji sê salan de siyaseteke zelal birêvenebir. Heta niha jî DYA'yê siyaseteke zelal ne li dijî DAIŞ'ê û ne jî li dijî rejima Esad nişan daye. Ew valahiya ji hêla Rûsya'yê ve hat dagirtin û Rûsya'yê balanseke nû avakir. Îran jî ji xwe ji zûdeye li herêmê bû. Hem di warê aborî û hem jî di warê perwerdekirina leşkerên Beşar Esad ve Îran'ê piştevaniya Esad dikir. Hin caran hinek hêzên biçûk jî dişand nav Sûriye'yê. Her wiha niha jî hin agahî belav dibin ku ew ê pasdarên Îran'ê derbasî Sûriye'ye bibin û di warê bejayî de li hember DAIŞ'ê şer bikin. Bordûmanên DYA'yê yên ser DAIŞ'ê DAIŞ têk nebir. Erê rê li ber mezinbûna wê girt lê ew bi dawî li wan neanî. Niha jî Rûsya dest bi bordûmanan kiriye. Wisa xuya dike ku ew ê jî Helebê dest pê bikin û wê herêmê azad bikin û ew ê DAIŞ û Cebhetûl Nûsrayê têk bibin. Tesîra bordûmana Rûsya ya du hefteyan bi encam in. Artêşa Sûriye'yê jî bi hêz bûye û li hember Cebhetûl Nûsra û DAIŞ'ê digihe encaman. Cebhetûl Nûsra û DAIŞ lawaz dibin.

DYA'yê li Rojhilata Navîn siyaset û stratejiyeke zelal û eşkere nişan neda. Valahî û nebûna hêzeke mezin hebû li Rojhilata Navîn. Rûsya vê yekê bikaranî û ew valahiyê dagirt. Ew yek tesîrê li ser kurdan jî dikin. DYA'yê piştevaniya PYD'ê û YPG'ê kir di şerê li hember DAIŞ'ê de. Ji ber ku peywendiyê wan û Tirkiyê xurt in ew piştevanî yekser nekir. Lê belê niha DYA'yê jî niha li ser wê yekê disekine ku bi navê Hêzên Demokratîk ê Sûriye'yê artêşekê ava dike. Hêza mezin a wê artêşê ji kurdan pêk tê û DYA'yê piştevaniya wê hêzê dike. PYD ji hatin û hebûna Rûsya'yê ya li Sûriye'yê gelekî kêfweş e. Rûsya jî dixwaze di şerê li hember DAIŞ'ê de bi PYD'ê re di nava tiffaqekê de be. Rûsya ew ê ji beşdariya tiffaqeke bi PYD'ê re gelekî sûdê werbigre ew ê PYD jî mifayê ji vî şerî bigre. Qiymetê PYD'ê di siyaseta navdewletî de berz bûye. DYA'yê di vê çarçoveyê de mecbûrê biryarekê werbigre. Divê bi Tirkiye'yê bide qebûlkirin ku PYD li Rojava heye û wê qebûl bike. Bi baweriya min divê PYD ew rêveberiya xweser a ku li Rojava avakiriye bi wan hêzên heyî bide qebûlkirin. Diyar nîne ku ew ê kî bi ser keve û kîjan strateji bi ser keve. Egera wê yekê jî heye ku PYD hemaheng be bi Rûsya'yê re. Û egera wê heye DYA'yê li vir jî şikestinekê bixwe û tûşî valahiyeke bibe weke li Efxenîstan û li Iraqê.

Tiştekî din jî heye. Tesîra siyeseta Tirkiye'yê ya Sûriye'yê jî ew konsensûs û alozî bi xwe re anî. Siyaseta Tirkiye'yê ya li Sûriye'yê şikestin xwar û têkçû. Tirkiye'yê ji ber ku endamê NATO'yê ye û hevalbendê DYA'yê dikarîbû hebekî xweragiriyê bike. Lê belê ez dikarim wê yekê tekez bikim ku tu siyaseteke Tirkiye'yê ya çalak li herêm tuneye. Li hember êrîşên Rûsya'yê derdikeve. Piştevaniya tirkmenên dike. Ji DYA'yê dixwaze ku fişarê li Rûsya'yê bike. Li hember PYD'ê radiweste. Ez dixwazim bale bikşînim ser tiştekî din jî siyaseta Rêveberiya Herêma Kurdistanê ya li hember kurdên Rojava jî niha rawestiyaye. Nikarîbûn siyaseteke serbixwe li hember kurdên Rojava bikarbianiyana. Ez dikarim vê yekê tekez bikim ku siyaseta kurdên Başûrê Kurdistanê ya li hember Rojava jî serkeftî nebû.

**Di dirêjahiya dîrokê de Sovyetê her tim piştevaniya Rejima Baas'ê kiriye. Niha jî Rûsya piştevaniya Beşar Esad dike. Eger Beşar Esad dîsa bihêz bibe û DAIŞ'ê û komên din ê tûndrew têk bibe egera wê heye ku êrîşî kurdan bike?**

Ew Rûsya, Rûsya'ya sorewî bû. Cudahiya wê Rûsya û vê Rûsya'yê heye. Mesele ev e. Eger Beşar Esad bi serkeve û hikûmeteke yekgirtî li Şamê saz bibe ew ê bi kurdan re tûşî û arişê û mûşkileyan bibe.



Eger Sûriye li Şamê dîsa bibe dewleteke mezhebî ew ê êrîşî kurdan bike. Di siberojê de ew ê peywendiyên kurdan bi Rûsya, DYA'yê û YE û NY re çawa be diyar nîne. Lê belê divê kurd baş zanibin ku eger kurd tûşî mûşkileyê bibin ew karesateke mezin pêk were. Her tim wisa bûye. Dewletên mezin jî piştevaniya rêvebirên etnîkî û netewî nakin ew piştevaniya dewletên navendî dikin. Sûriye'yê endamê welatên Yekîtiya Ereba ye.

**Wisa xuya dike ku êdî li Rojhilata Navîn û du bere hene. Bereya ku DYA'yê serkêşiya wê dike û bereya Rûsya serkêşiya wê dike. Îro ew mihwera Rûsya û Îran serkêşiya wê dike li Bexda-Şam û Moskov'ê odeyên stratejiya li hember şerê DAIŞ'ê danîne. Her wîha Îran jî daketiye qadê. Gelo egera wê yekê heye ku weke Rêkeftina Varşova'yê rêkeftinek di navbera welatên şerqê de çê bibe?**

Na. Mesele ne wisa ye. Ez rêkeftinek wisa nabînim. Siyaseta DYA'yê li Efxenîstan'ê, li Iraq'ê şikestin xwar. Niha jî Sûriye'ye şikestin xwar. Rûsya dixwaze wê valahiya li Rojhilata Navîn a di sala 1990'î û vir ve heye dagre û hêzên heyî ber bi xwe bikşîne. Hevalbendê herî bihêz ê Rûsya'yê Îran e. Û eger karibin dîsa saz bikin Sûriye'ye. Beriya wê ez dixwazim tiştekî bêjim. Rewşa Îran'ê jî diyar nîne. Ew ê li gor rewşa Îran'ê hin tişt aşkere bibin. Eger Piştî Ayettûlah Xameney îslamî û pasdarên Îran'ê li ser erk û desthilatdariyê bimînin egera wê heye ku ev hevkariya niha ya bi Rûsya'yê re hey xurttir û bibe. Eger piştî Xamaney reformîstên Îran'ê desthilatdariyê bidestbixin, Hesenê Rûhanî, Cevad Zarîf û û kesên din ê reformist serkeftî bibin ew ê Îran nêzîkî Rûsya'yê nebe. Ew ê Îran nêzîkî DYA'yê û YE'yê bibe. Rewşa Îran'ê ew ê diyardeyeke giring be. Lewre heta du sala ew ê ew jî eşkere bibe. Li gor tê gotin nexweşiya Ayetûllah Xamaney lê giran bûye û ancax 18 mehan yan jî 2 salan li ser piyan bimîne.

**Armanca Îran'ê ya sereke li Sûriye'yê çi ye? Îran çima dixwaze Beşar Esad li Sûriye'yê bimîne? Çi berjewendiyên Îran'ê di mayîna Beşar Esad de heye?**

Îran ji bo Rûsya'yê gelekî giring e. Piştevaniya Rûsya'yê ya li Îran'ê jî gelekî muhîm bû. Li gel Rûsya'yê Çîn jî alîgirê Îran'ê ye. Dema ambargo li ser Îran'ê hebû Rûsya'yê û Çînê alîkariya Îran'ê dikirin peywendiyê wan bi Îran'ê re xurtt in. Naxwazin Îran nezîkî DYA'yê bibe. Îran ji bo wan ji bo stratejiyên wan di nava şer deye. Tiştekî din jî heye ew jî ev e: Ew milmilaneyen di navbera rêveberiya Îran'ê hene jî tesîrê li ser wê yekê jî dike ku peywendiyên Rûsya'yê û Îran'ê gelekî xurt bibin. Bereyek heye li Îran'ê ew bere naxwaze Îran nezîkî Rûsya bibe. Ew dixwazin Îran nêzîkî DYA'yê bibin. Rûsya naxwaze Îran'ê ji dest bide.



Herdû Hizbên Demokrat ê Îran'ê û Komele jî lojîstîk û aboriya xwe ji Başûrê Kurdistanê werdigrin. Ya PDK alîkariyê dide wan yan jî Yekîtî dide wan. Heta PDKÎ'yê nikarîbû televizyona li Parisê li ser piyan bihêle. Hêza wan aborî nebû. Li herêmeke wisa ew ê çawa şerê çekdarî bikin. Diçin gundan xwarin û vexwarina xwe ji gundan distînin. Ji şerê çekdarî re dîplomasiyeke mezin lazim e. Lojîstîk û taqemeniyên xurt divê hebin.

**D warê enerjiyê de di navbera Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Rûsya'yê de danûstendinên giring çêbûn. Bi taybetî jî rêkeftina Gazprom'ê di vî warî de gelekî bilind hat nirxandin. Her çend Rûsya bi RHK'ê re ji bo berjewendiyên hevpar birêkeve jî hevalbendê Rûsya'yê Îran li hember destkeftî û serbixwebûna Kurdistanê ye. Ew ê ev yek çi tesîrê li peywendiyên Rûsya û RHK'ê bikin?**

Peywendiya Herêma Kurdistanê ya bi Rûsya'yê re û rêkeftina Gazprom'ê bi nezera min gelekî giring bû di navbera kurdan û rûsan de. Ew rêkeftin stratejiyeke mezin a Rûsya'ye û RHK'ê ya li Rojhilata Navîn. Rûsya berjewendiyên Îran'ê diparêze li herêmê. Rûsya naxwaze Iraq parçe bibe. Rûsya li Iraq'ê bêtir berjewendiyên Şîeyên li Iraqê diparêze. Ji Kurdistaneke serbixwe re neamadene. Hikûmeteke azad a Kurdistanê baş nabînin. Îran jî naxwaze Kurdistan azad û serbixwe be. Muhalefeta esîl a li hember serbixwebûna Kurdistanê Îran e. Iraqeke yek parçe ji wan re baş e. Dixwazin desthilatiya Şîeyan hebe. Leşkerên Şîeyan hebin. Mînak weke serdema Malîkî. Hikûmeta niha jî wisa ye. Weke ya Malîkî ye. Bi nezera min peywendiyên aborî nayê wê wateyê ku ew ê siyaseta xwe ya li hember kurdan biguherînin. Tirkiye jî wisa ye. Di navbera RHK'ê û Tirkiyê de peywendiyên gelekî xurt yên aborî hene. Lê belê dema ku RHK'ê li ser serbixwebûnê radiweste û wê tîne rojevê, li rastî muhalefeta mezin a Tirkiey'yê rast tê. Temaşeyî Rojava bikin mesela. Tirkiye yekem welate ku muhalefetê li otonomiya kurdan a PYD'ê ava kiriye dike. Dewlet peywendiyên xwe yên siyasî û aborî têkelî hevdû nakin. Di nava 10 salên dawî de Hikûmeta Herêma Kurdistanê siyaseteke lawaz birêve biriye. Siyaseteke çalak li herêmê birêve nebiriye. Siyaseteke bi balans birêvenebiriye. DYA'yê û welatên YE'yê çi gotibe ew kiriye. Baweriya Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî bi serbixwebûna Kurdistanê nemaye. Siyaseteke çalak û li pişt wê biryarê nebûye ji ber wê jî tu kes ciddî nabîne.

**Ez dixwazim bêm ser geşedanên siyasî û qeyrana siyasî ya li RHK'ê. Tê zanîn ku destêwerdana Îran'ê di êrîşên li ser avahiyên PDK'ê de heye û gumana mezin jî li ser Goranê ye. Di qonaxeke wisa de ku li Başûrê Kurdistanê kurd gihiştine sînorên xwezayî, li Silêmaniyê partiyên siyasî dikevin bin kontrola Îran'ê?**

Bêgûman hêza Îran'ê ya li Helebçe û Silêmanî û li wan nevçeyan gelekî xurt e. Bêguman bereyek li Îran'ê heye piştevaniya Yekîtiyê dikin. Bêguman Îran ji serkeftinên Goranê kêfxweş dibe. Lê belê sedemên qeyrana siyasî ne ev in. Perçeyekî qeyrana siyasî PDK'ye. Kak Mesûd Barzanî û PDK dev ji hikûmetê bernadin. Di warê demokrasiyê de tiştekî nakin. Niha dema mayîna wî ya serokatiyê bi dawî bûye lê belê dev jê bernade. Eger tu bêjî Îran'ê ew qeyran duristkiriye ne rast e. Kak Mesûd Barzanî ew qeyran durist kiriye. Îran jî ji van qeyranan îstîfade dike. Mimkûne ew qeyran bi dawî bibin PDK çareser bike û wê stratejiyê berdewam bike. Mimkûnê dema Kak Mesûd Barzanî bê dirêjkirin. Mimkûne biraziyê wî yan jî kurê wî were ser erka wî. Lê belê ew îmaja demokrasiyê ya kurdan têk diçe. Ew demokrasiye heye jî bi temamî dirûxe. Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî dibe weke hikûmeta Beşar Esad, dibe weke hikûmeta Mûbarek, dibe weke hikûmeta Malikî. Dema erka yekî xilas dibe divê dev ji wê erke berde. Eger erka te bi dawî bû dev jê berde here çend salên din were. 4 salên din were. 8 salên din were. Beşdarî opozîyonê bibe. Eger tu bêjî "Ez berdim ew ê welat birûxe" wê demê tu cudahiya te û Seddam, Mûbarek û Hafiz Esad namîne wan jî wisa digot.

Sedemên qeyrana siyasî ne Îran e. Aloziya navxweyî ye. Berjewendiyên Îran'ê di qeyranê de hene. Eger PDK berjewendiyên Îran'ê biparêze Îran piştevaniya wê dike. Eger YNK berjewendiyên wê biparêze Îran piştevaniya wê dike. Kak Mesûd Barzanî û PDK berjewendiyên Tirkiye'yê diparêzin. Hurgilî û rageşiya berjewendiyên Îran û Tirkiye'yê jî dibin sedemên aloziya Kurdistanê. Ew naxwazin Îran li herêmê bibe xwedî hêz û qeweteke mezin. Hem Îran dixwaze berjewendiyên xwe ber bi pêş ve bibe hem jî Tirkiye dixwaze berjewendiyên xwe ber bi pêş ve bibe. Weke min got hokara sereke kêşeya navxweyî ye.

**Li Rojhilatê Kurdistanê jî gelek rûdan û geşedan hene. PDKÎ amadekariya şerê çekdarî dike. Li Rojhilat çi dibe? Di kurtedemekê de egera wê heye ku şer li hember PDKÎ û Komara Îslamî ya Îran'ê de pêk were?**

Çalakiya çekdarî di warê stratejiyê de ez ne di wê baweriyê de me ku bi mifaya kurdan be. Helbet dikarin çalakiyên siyasî bikin. Egera wê heye ku heta 2-3 salan gorankarî çi bibe li Îran'ê. Lê belê ew hêdî hêdî xwe ji wê yekê re amade dikin. Ji xebatên çekdarî re lojîstîk lazim e. Lojîstîk û çeken kurdên Rojhilatê li hember Îran'ê şer dikirin ji aliyê welatên cîran ve dihatin dabînkirin. Niha ka kî heye ku piştevaniya çekdarî ya kurdên Rojhilatê bike? Herêma Kurdistanê jî nake. Ew ê Îran Kurdistanê bordûman bike. Tirkiye jî nake. Iraq ji xwe nake.

Herdû Hizbên Demokrat ê Îran'ê û Komele jî lojîstîk û aboriya xwe ji Başûrê Kurdistanê werdigrin. Ya PDK alîkariyê dide wan yan jî Yekîtî dide wan. Heta PDKÎ'yê nikarîbû televizyona li Parisê li ser piyan bihêle. Hêza wan aborî nebû. Li herêmeke wisa ew ê çawa şerê çekdarî bikin. Diçin gundan xwarin û vexwarina xwe ji gundan distînin. Ji şerê çekdarî re dîplomasiyeke mezin lazim e. Lojîstîk û taqemeniyên xurt divê hebin. Divê li pişt şerê çekdarî siyaseteke xurt hebe. Ew partî dikarin li Rojhilatê jêrzemîna ferhengî û çandî têxin bin kontrola xwe. Ew ê çekên Pêşmerge ji ku derê werin? Eger hêzeke lojîstîk û qewî ya siyasî û dîplomatîk tunebe tu gewretirîn hêza cihanê jî be tu nikarî encaman bistîne.PKK'ê di sala 1984'an de dest bi şerê çekdarî kir. PKK 30 sal e şer dike û îro danûstendin hene. Siyaseta HDP'ê heye. Eger ew nebûya HDP'ê 80 parlementer bi dest nedixist. Ji ber 80 parlementerên kurdan xew nakeve çavê rayedarên Tirkiye'yê. Ez di wê bawriyê jî de me ku ew ê HDP di hilbijartinan bê jî de denge xwe zêdetir bike.

Welat Baz



# Xemla Loristanê DAREŞAR

Dareşar devera bihûştî ya dengxweşan Paşko ya Loriyan, xaka îlamiyan e. Bajarê dîrokê Bajêr di nav pergala rêvebiriya Dewleta Îranê de bajarekî Eyaleta Îlamê ye. Dareşar li pişt lûtkeyên Zagrosan, li quntara Çiyayê Mile, li keviya Çemê Saymare li ser deştekî sersewz û berbilaw avakiriye. Bajêr di navbera merîdyenên 33 û 52ê başûr û paralelên 47 û 34ê rojhilat de cîh digre. Klîmaya bajêr medîteranî ye. Herem havînan hênik û zivistanan sar e.

### Çiya

Bajêr herçend li ser deştekekî avakirîbe jî, derdora Dareşarê ji alî girên Zagrosan ve hatiye girtin. Dareşar ji alî Çiyayê Mile ve hatiye pêçan. Ev çiya vî bajarê wek hîlalekî ji sê aliyan ve girtiye nav quntarên xwe. Li cîhê ku Mile nizmdibe, li kêlekê Kewerko destpêdike. Ev herdû çiyayên bilind jî xelekên Zagrosan e. Bilindahiya lûtkeyên van çiyayan li hin deveran digîjin 2 hezar metreyî. Bajarê Dareşar ku li quntara van çiyayan avabûye, ji deryayê 7 metre bilind e.

### Çemên bajêr

Çemê Saymare li Dareşarê çavkaniya avê ya herî girîng e. Çem 4 kîlometre li bakûrê bajêr derbas dibe. Ji bilî Saymare gelek çavkaniyên avê yên biçûkên din jî hene ku erdîma heremê avdidin. Li ostana Îlamê Bendava Seymareh, ku 30 kîlometre li bakûr rojavayê Dareşar dikeve li ser rûbarê Seymareh hatiye avakirin. Hêza tirbûnên bendavê 480 megawate û salane 844 milyon kîlowat kareba hildibrîne. Li aliyê din di bin gola bendavê de wê gelek deverên dîrokî bimînin û çend berhemên navdar yên ku ji dema Sasaniyan mane di bin avê de bifetisin.

### Deşt

Erdnîgara Dareşar yek ji deverên bihûştî yên Kurdistanê ye. Çiyayên bilind, çemên avşîrin û deştên fireh û nevalên kûr, tevî nebat û ajalên xwe dilpakiya însanê xwe dixemlîne. Ji ber avhewaya heremê li ser xaka bajêr kiştûkal yanê kişewerzî gelek pêşketiye. Li ser xaka avî zêdetir çeltik yanê birinc tê çandin.

Herwiha genim û ceh li gel nebatên din berhemên tîcarî yê erdîma bajêrin. Ji kişewerzên Dareşar Rehîmê Redkar behsa mahsûlên kişewerziya heremê dike. Bi taybetî li gundên keviya Çemê Saymare birinc tê çandin û bi sedan malbat birincê navdar yê Kurdistanê diçine.

Li aliyê din Dareşar depoya fêkî û sebzeye jî. Li baxçe û bostanên heremê hemû cûre fêkî û sebze tên çandin. Bi taybetî xiyar, zebeş, petêx û gundorên Dareşarê navdarin. Ji ber vê dewlemendiyê li sûka bajêr fêkîfiroş, kasibên herî mijûlin û dikkanên wan wek tabloyên hunerî ne. Yek ji fêkifiroşên sûka Dareşarê behsa karê xwe dike.

Kerengên Dareşarê di mehên biharê de ji xwarinên serekê yên bajêr e. Malên ku rojê carekî kereng tê de neyê xwarin nîne. Yek ji muşteriyên kerengên biharê li sûkê ji kamera me re wiha diaxife. Wextê derketina kerenga, gundiyên derdorê li sûka bajêr rojane bi hezaran kilo kereng difroşin. Ev gundiyê Dareşarê rojane 150 kilo kereng difroşe. Herwiha damdarî yanê ajaldarî jî yek ji sektor û toreyên debara gelê heremê ye. Keriyên mezin yên pez û garanên dawaran seranserê sînga çiya û deştên Darêşarê wek tabloyeke dinexşînin. Ji ber destayina damdariyê bazirganiya goşt û lawirên zindî li heremê gelek pêşveçûye. Herwiha berhemên ajalvaniyê jî navdarin û li sûka bajêr cîhekî taybetî digrin. Helbet ji goştê xweş yê pezê Dareşar kebaba xweş tê çêkirin. Li sûka bajêr li gelek deveran kebabfiroşên kolanan birçiyên bajêr têr dikin. Li aliyê din midfexa Dareşar bi dewlemendiya xwe tê naskirin.

Aboriya Dareşarê zêdetir li ser bazirganiyê ye. Li bajêr fabrîqa an jî sanayî nîne. Berhemên kiştûkal û ajalvaniyê sektora sereke ne. Di sûka bajêr de jî zêdetir tîcareta rojane û kasibî tê kirin. Li bajêr çend pasajên biçûk hene ku pêdiviyên rojane difroşin.

### Rêvebirî

Ostana Îlamê, li başûr rojavayê xaka Kurdistanê dikeve û bi başûrê Kurdistanê re hevsînor e. Navenda eyaletê bajarê Îlamê ye. Xaka ostanê ji 20 hezar kîlometreqare firehtir e û şêniya ostanê jî nêzî 6 hezarî ye. Li Ostana Îlamê ji bilî Dareşar; bajarên wek Mehran, Dehloran, Şîrvan, Çardavol, Malek Şahî, Avyan û Abdanan jî hene.

Dareşar 135 kîlometre dûrî Îlamê ye û li bakûrê rojhilatê vî bajarî dikeve. Peytexta Eyaleta Kurdistanê Sîne jî 440 kîlometre dûrî Dareşarê ye.

Cîranên Dareşarê ji bakûr ve Avdanan û ji rojava jî Endîmeşk e. Bajêr nêzî sînorê eyaleta Loristanê ye. Firehiya xaka bajêr 4 hezar kîlometreçargoşe ye. Erdîma bajêr zêdetir ji çiya û deverên bilind pêk tê. Şêniya bajêr 96 hezar e. Bi Dareşar ve girêdayî çend xopan û gelek gund jî hene.

Şêniya bajêr bi giştî kurd in. Li heremê piranî eşîrên Lor dijîn. Dareşar di axaftina zaravayên kurdî de devereke dewlemende. Li heremê zaravayên lorî yanê feyli û kelhorî û gelek devokê van zaravayan tên bikaranin. Li nav Dareşarê jî zêdetir zarava lorî tê bikaranîn. Dareşarî bi giştî Muslumanên şia yên 12 îmamî ne. Li gundên derdorê û li nav bajêr hin bawermendên yaresanî jî hene.

### Bajarê Cemşîd

Dareşar di demên kevn de tevî herema derûdorê wek Paşko yanê herema pişt çiyayan hatiye binavkirin. Navê nawenda Dareşar ya kevn jî Cemşîdabad, yanê 'bajarê ku ji alî Cemşîd ve hatiye' avakirin bûye. Cemşîd di mîtolojiya Aryanî de wek bapîrê mirovahiyê û padîşahê yekem yê Aryena tê naskirin. Ji ber ku Dareşar yek ji heremên kevnare û xwedî dîrokeke kevn bûye, di dema rejima Şah Riza de ev nav li bajêr hatiye danîn. Piştî şoreşa Îslamî jî navê bajêr wek Dareşar hat guhertin. Gele heremê bajarê xwe wek Dareşa binav dikin.




### Şikeftên bajêr

Di encama lêkolînên arkeolojîk de diyar bûye ku li herema Dareşar di dema kevirîn de jiyana komelgehî hebûye û însanên demê li pey xwe gelek rêç û rîşan hiştine. Di tepeyên Kewerko û Çiyayê Mile ku ji zinnarên nerm pêk tên, gelek şikeft hene ku bûnê hêlînên yekem yên jiyanê.



Şikeftên Kewerko, li zinnarên keviya Çemê Seymareh bi awayekî xwezayî peyda bûne. Hinek ji van şikeftan bi destê însanan ji bo jiyanê hatine hatine edilandin. Îlam di dîrokê de navê yek ji şaristaniyên kevnare yê mirovahiyê ye. Îlamî wek nîjad wek gelekî Zagrotîk û Aryenî tên binavkirin. Navê etnîkî yê Îlamiyan Lorî ye. Di heman katî de tevî şaristaniyên cîranên xwe yên wek Lolo, Qasîd û Gotiyan bûne bapîrên Kurdên îroîn.

Zimanê van hemû şaristaniyan yek e. Paşê Medî û eşîr û komên din yên Arî jî tevlî damezrandina esasê netewa Kurd bûne. Zanistên dîroka kevn ya Mezopotanya yên wek Speiser û Husîng Îlamiyan bapîrên Loran û Loran jî beşek ji netewa Kurdan binavdikin.



Şaristaniya Îlamiyan di serê hezarsala 3'êm ya berî zayînê li Kurdistanê, li quntarê Zagrosan wek dewleteke federatîf belav bûye. Sînorê vê dewletê gihîştiye heta Hindîstanê û bi navê Anzan hatiye naskirin.

Dewleta Îlamê berî zayînê di salên 640'an de di dema asûriyan de hatiye ruxandin. Piştî ku desthilatiya medan li Îranê belav bû, Îlam di vê împaratoriyê

de wek ostaneke otonom hebûna xwe domandiye. Di dema pers, selokîd û partan de jî statuya heremê domkiriye. Bi taybetî di dema Îskender û Selokîdan de Dareşar nawendeke girîng ya siyasî û çandî bûye. Ji ber vê girîngiya xwe li heremê gelek avahî, kele û kevnebajar hatine avakirin.

Di sedsala sêyem de piştî ku li ser xaka Kurdistanê Dewleta Sasanî hat damezrandin, herema Paşko tevî Dareşar bûye nawendeke olî û siyasî ya vê dewletê. Dareşar peytexta havînî ya sasaniyan bûye. Li Dareşar a kevn di dema Sasaniyan de Bajarê Cemşîdabadê hatiye avakirin. Bajarê Matakdû ku ji hingê ve mane û mînakên girîngiya heremê ne, hîn jî li ser piya ne. Dareşar piştî şerê Qadîsiye ku hukumdariya sasaniyan hat ruxandin, ketiye destê erebên musluman.

Îrana merkezî herçend sedsalên dirêj di destê selçûkî, sefewî û qaçaran de mabe jî Loristan piştî sedsala 10'an ji alî mîrên lor ve hatiye birêvebirin. Di serê sedsala 17'an de Kerîmxanê Zendî ku Lor bûye, derketiye ser text û bûye Şahê Îranê.





## Bajarê Madaktû

Dareşah ji ber ku yek ji nawendên vê dîroka dûrdirêj bûye ew niha jî wek muzexaneyeke servekiriye. 4 kîlometre li nêzî bajarê niha bi navê Şarê Madaktû bajarekî qedîm heye ku derdora wê bi berhemên kevnare ve xemilandiye. Ev bajar di nav gel de jî wek Mehregan Qezeq an jî Mehregan Kedek tê naskirin.

Xaka bajêr 120 hektar fireh e. Li gor arkeologan hin avahiyên bajêr digîje dema şaristaniya Îlamê û di pêvajoya dîrokî de her hatiye nûkirin û hertim şên bûye. Bajarê Madaktû di dema Sasaniyan de gelek şên bûye û ji alî Xusrew Perwîzê padîşahê wan ve wek peytexta havînî hatiye bikaranîn. Herwiha xelîfê yekem yê Abbasî Mansûr jî li vî bajarî bicih bûye. Madaktû li nêzî çemê Seymare li quntara Kewerko hatiye avakirin. Avahiyên bajêr hemû ruxuya ye.

Li ser rêya Madaktû gumbeta Çarqapî cîh digre. Çarqapî li kêleka gundê Madaktû li bin girekî hatiye avakirin.

Di nav berhemên heremê de ya herî taze ye. Di dema sefewiyan de hatiye çêkirin. Gumbet ji bo yadî ewliyaya Îmamzade Baba Seyfedîn hatiye avakirin. Çarqapî li ser çar stûnan avabûye. Her aliyekî stûnan ku li cîhetekî dinêre wek deriyan vekirîne. Ji ber vê yekê wek çarqapî hatiye binavkirin.

## Pira Gamêşan

Pira Gamêşan ku li ser çemê Seymare hatiye damezrandin yek ji newazeyên mîmariya Kurdistanê ye. Pir 20 kîlometre dûrî başûrê rojhilatê Dareşar e. Kembera pirdî Gameşan 165 metre dirêj e. Pira Gamêşan di dema Sasaniyan de ji alî Şahpûr ve hatiye damezrandin. Li herdû aliyên çem li ser kembera pirê dû birc hatiye avakirin. Gelek çaviyên pirê hene. Di nav vana de dû çavîyên bilind hene ku di teknîka wê demê de bi hostayiyeke ziraw hatine honandin. Pir ji tûxlayên sorkirî û kevirên reş hatiye avakirin. Rêya pirê îro êdî nayê bikaranîn. Kembera ser çem ruxuyaye. Li bin çaviyên pirê gelek ode û avahî jî hatine çêkirin. Pir di dema xwe de qek meqerekî leşkerî jî hatiye bikaranîn.

## Ateşgeha Bahdînî

Li nêzî pirdî Gawmeşan, ateşgehekî kevnare ya Zerdeştiyan hatiye avakirin. Herem bi navê Esmethayê Hevparîşadê jî tê naskirin. Wek tê zanîn di dema sasaniyan de ola fermî ya dewletê bahdîn bûye û bahdîniyan îbadetên xwe di ateşgehan de kirine. Dîroka awirgehê digîjê salên 2 sedên piştî zayînê. Ateşgeh ji dema sasaniyan maye. Li gor lêkolînan li ser xirbeyên awrigehekî din hatiye damezrandin. Ateşgeh ku hin beşên we 5 metre bilind in, niha xerabûye. Li gor belgeyên dîrokî ev ateşgeh di dema xwe de yek ji îbadetxaneyên herî mezin bûye.

## Keleyên Dareşarê

Li heremê kevnewarekî herî balkêş keley Tengî Behramî Çobî ye. Ev qela ku di derbendekî teng de di nava dû lûtkeyên zinnarî de hatiye avakirin 14 kîlometre dûrî Dareşar e. Dîwarên kelê yên pêşîn ji ber ku di şikefta Behramê Çobî de hatiye avakirin, bi heman navî hatiye naskirin.

Keleya ku di dema sasaniyan de di zinnarên çiyayê Mile de hatiye avakirin ji bo sihêtiya rê û ewlekariya heremê hatiye damezrandin. Kele wek meqerekî leşkerî hatiye bikaranîn. Di salên dawîn de ji alî nêçîrvanên xezîneyan ve hatiye talankirin.

Qelaya Şêx Mekan yek ji berhemên balkêş yên Dareşar e. Ev kele ku dişibe qesrekî li nêzî gundê Şêx Mekan e. Halê dawîn yê avahîyê herçend ji dema Mîrnîşên Lor mabe jî, di demên kevintir de hatiye avakirin. Ev avahî di dema xwe de meqereke leşkerî bûye. Diwarên kelê bi 5 bircan hatiye pêçan. Di kelê de avahiyên 3 tebeq hene. Di nav dîwarên kelê de gelek avahî hene.

Di binê avahîyê de gelek odeyên ku wek kîler, depo, zindan û maxzen hatine bikaranîn, hene. Derî û dîwarên derwe yên avahîyê hîn jî bi îhtîşamin û li ser xwe ne. Ser avahiyan bi gumbetan hatine girtin. Di hewşa kelê de hewzekî avê jî hebûye. Ava hewzê di navbera hemam û ev hewzê de seyrûsefer kiriye. Dîwar û avahiyên kelê ji kevir, gêç, kerpîç û xweliyê hatiye çêkirin.

Keleyekî din li heremê li nêzî Gundê Şêx Mekan kela Mîrxulamê Haşimî ye. Ji şêwazê mîmariya avahiyê diyar dibe ku berhemeke sasanî ye. Tê texmînkirin ku 1800 sal berê hatiye çêkirin. Ev kele jî di nav zinaran de bi şêweyekî ecêb hatiye avakirin. Bilindahiya dîwarên kelê 15 metre û firehiya dîwaran jî metreyeke nîv e. Di hindirê kelê de 4 jûr û pîle hene. Li nêzî kelê aşekî xirabê jî heye.



## Abdullah Çelîk:

# Gerek ma kurdan mîyan ra rexnegirê başî vejîyê

**Welat R. Ramînazad**

Hîrês serrî yo ke mîyanê perodayîş, çetinîtî , û bê îmkanîyê de bi kirdkî (zazakî) bingehê edebiyatî virazîya. Warê berhemanê kurdkî de bi çarçeweya teorîyanê zanistî de venganeyê rexnekerdişî estbî. Govarê Wêje û Rexne û Zarema nê venganeyî ha pirr kenê û ê do edebiyatê kurdkî aver bêre. Mi edîtorê kirdkî yê govara Wêje û Rexne û hetkarê govara Zarema Abdullah Çelîk reyde wêje û rexne û Zarema ser o ropartajêk kerd.




**Edîtorîya to bi Zarema û Wêje û Rexne senî dest pêkerde?**

Verê cû Amed de grûba ma ya wendişî estbî. Uca de ma wendişê edebîyatî ser o ameyêne têhet. O wext ma ge-ge hem zazakî ser o kitaban wendêne hem zî ma tayê embazî hîkaye û şîîran nuştêne. Na xebate ra dima tayê embazan "Grûba Govara Wêje û Rexne" naye ro. O wext ez mîyanê na grûbe de nêbîya. La, ez çendêk govare ra dûrî biba zî, mi xebata înan dîyêne û eşnawitêne. Gama ke Wêje û Rexne vejîyaye hem çarçewaya govare hem zî babeta govare zaf ro weşê mi şîyî. O wext mi xebatkaranê govare ra va ke, "eke şima rê problem nêbo û eke şima biwazê ez zî wazena na govare de bixebitî." Embazan zî va, temam. Hûmara dîyine de mi edîtorîya govara Weje û Rexne kerde. O wext ra heta nika ez edîtorîya Govara Wêje û Rexne kena. Zarema zî, tayê embazî grûba govara Weje û Rexne ra aqetîyayî û Zarema vete. Mi înan ra vatbi, eke lehçeya zazakî de îhtîyacîya şima bi min bibo ez do şima rê hetkarîye bikera. Nê vatişê mi ra pey weşangerê govara "Zarema" îhtîva û kalîteyê nuşteyanê zazakî mi ra persayêne. Xulasa ez edîtorîya Govara "Weje û Rexne" kena û govara "Zarema" rê hetkarîye kena.

**Kurdî û rexne! Nê serranê peyênan de babeta rexnekerdişî de kurdan mîyan de munaqeşeyêk esta. Rexne çi yo û kamcîn krîteran gorê yeno kerdene?**

Eke merdim vajo hetê rexneyî ra, krîterê rexneyî estê, o xelet beno. William Faulkner vano, "Ez ewnîyena nuşteyê xo ra. Mi eleqedar nêkeno ke rexnegir çi vato." Tena Faulkner ney, Ernest Hemingway, Virginia Woolf, James Joyce û zafê hunermendê edebîyatî zî wina vanê. Mi gorê rexneyo ke bingehê xo esto, hunerê edîbî beno. Rast o, munaqeşe esta, ez bawer kena ke tîya ra pey zî do munaqeşe biba. Tîya de çîyêko muhîm esto, o zî, gerek rexnegir qaydeyanê rexne û şuxulnayîşê ziwanî bizano. O wext eşkeno hem ziwanî hem zî kalîteya hunerê edebîyatî aver bero. Faulkner, Joyce, Woolfe çendêk "rexne"yî rexne kerdo zî George Luckas, Frederic Jameson, Herold Bloom, Franco Moretti hetê estetîkî û rexneyî ra çîyêko zaf baş anê meydan, bawerbike hunerê edebîyatî zaf-zaf aver berdo. Tîya de ez nêvaja nêbeno; Gerek mabênê ma kurdan de rexnegirê başî vejîyê. Çunke kêmasî, xeletî û bêkalîteyî edebîyatê ma kurdan de zaf ê. Beno ke tesîrê rexnegir û hunermendan, ziwan û hunerî aver bero.

**Ti bi xo zî nuştoxê Zarema û Wêje û Rexne yî. Ti nuşteyanê xo û ê bînan senî vînenî? Meqaleyê ke bi kirdkî weşanîyayê rê sênî reaksîyonî musnîyenê yan zî wendoxî înan senî vînenê?**

Verê cû mi tirkî nuştêne û ge-ge nuşteyanê mi ser o ma embazan reyde qal kerdêne. La nuşteyê ke mi kirdkî nuştê qasê nuşteyanê tirkî mi yewî reyde qal nêkerdo. Coka averşîyayîşê ziwanê ma zî tena bi ewnîyayîşê rexnegirî aver şiro. Wendoxî tay ê û êyê ke wanenê zî hema-hema ziwanî ra fam kenê. Nê hetî ra ez bawer kena ke problemê ma kirmancan zaf ê. Xulasa mi heta nika reaksîyonêko baş yan zî xirab nêgirewto. Ganî ez cewabê na perse kemî nêverdî; ez bawer kena ke konseptê govara Weje û Rexne do demo ameyox de averşîyayîşê hunerî de cayêko baş bigîro.

**Ziwanê Meqaleyan yê Wêje û Rexne û Zaremayî ser o rexneyêk esto. Vanê ziwanê înan zaf giran o, nêno fehmkerdiş. Derheqê nê rexneyî de ti vanî se?**

Ez nê rexneyî normal vînena. Çunke qaydeyê ziwanê ma hema nênîştê ro. Roje bi roje do ziwan aver şiro û êyê ke ziwanê meqaleyanê ma ra fam nêkenê do hêdî-hêdî fam bikerê. Xêrcê nê rexneyî, ma govara Wêje û Rexne de hîkaye, şîîre, roman nênusenê. Çarçewaya govara Wêje û Rexne teorîyê edebîyatî yo, famnêkerdiş nê hetî ra normal o. Ez bawer kena, êyê ke ma ra fam nêkenê teorîyê edebîyatî ser o heta nika çîyêk nêwendo.

**Ziwanê ma de ferhengê antropolojî, sosyolojî, psîkolojî, felsefe û sînema ûsb. hema hedre nêbîyê. Zarema û Wêje û Rexne de meqaleyanê xo de şima termînolojîyêko senîn şuxulnenê?**

Tîya de çîyêko muhîm esto, o zî, zafê disiplînan de termînolojîyê viraşteyî estê. Ma înan newe ra nêvirazenê. Viraştişê termînolojî rehet nîyo. Her çî ra ver gereke merdim ziwannas bibo û derheqê dîsîplînî de zî zanayîşê xo estbo. Xora tayê dîsîplînan de hetê Grûba Xebate ya Vateyî ra termînolojî tesbît bîyo û ma zî nînan ra îstîfade kenê, eke ma vajê termînolojîyo ke lehçeyê kirmanckî de hema nêvirazîyayo, tesbît nêbîyo bibo, ma orjînalê ci yanî termînolojîyo ke mîyanneteweyî de şuxulîyeno, şuxulnenê. Her kes goreyê xo çeku yan zî termînolojî virazo o wext ziwan xeripîyeno. Şarê ma gereka nê xusûsî rê dîqet biko.

**Ewro edebîyatê kurdkî qels o, berhemî xo tekrar kenî, mavajîm mîyanê bellî babetan de mendo, eseran de hetê terz û teknîkî ra zaf xeletî estê. Seba ke rexnegirî çin ê, edebîyatê ma ha na rewşe de yo, to gorê sewbîna sebebê na rewşe estê?**

Xora cewab zereyê perse de esto. La ez gereka na perse ser o tayê çîyan vajî. Ziwanê ma, kulturê ma, binê destê tirkan de mendo. Înan nêverdayo heta nika ziwanê ma aver şiro. Coka sînorê ziwanê ma sînorê dewanê ma de mendo. Ziwanê ma kurdan nêbîyo ziwanê bajarî. No problemêko pîl o. Mesela, teorîsyenê edebîyatî vanê, "Roman, kayê burjuvazî yo." Fikrê burjuvazî di sey û pancas serrî ra ver virazîyayo. La romanê ma yo yewin destê Deniz Gunduzî ra vejîyayo û pancês serrî verê cû ameyo nuştiş. Mabênê ma kurdan de o yo ke zengîn o, burjuva yo çin o. Coka hem hetê terzî ra hem zî hetê teknîkî ra kêmasîyê ma zaf ê. La ez bawer kena ke, wext ra wext no problem do mîyan ra wedarîyo, ziwanê kurdan xo newe ra virazo, hem hetê mana ra hem zî hetê teknîkî ra problemanê xo hal bikero.

**Çîyo ke edebîyatî aver beno rexne nîyo? Rasta xo zî rexnegirî sînoranê edebîyatî bellî nêkenê?**

Sînorê edebîyatî, sînorê mezgê nuştoxî yo. Rexnegir belkî bieşko ziwanî aver bero, terzê metnî aver bero. La ez bawer nêkena rexnegir sînorê edebîyatî virazo. Çunke viraştişê metnî binê mezgê hunermendî de hêşin beno.

**Seba rexnegiranê neweyan ma eşkenî se bikerî? Fikrê to çi yê?**

Nuştiş karêko zehmet o. Merdim gereka yew çekuye ser o dahî sereyê xo bidejno. Êyê ke newe-newe nusenê gereka bala xo baş bidê nuşteyî ser. Rexnegirî hîna zor a, çunke nuşteyo ke nusîyayo, rexnegir ê nuşteyî gereka newe ra binuso, newe ra mana bido ci û hunermendî rê rayberî bikero. Xêrcê nê tesbîtî, gereka rexnegir biwano, zaf çî bizano.





# Zaro Axa

**Baran Zeydan**

Îstanbul de, goristanê Camîya Eyub Sultanî de yew verkole vînenê ke ser o “Bitlisli Şemsi Ağa Oğlu 160 Yaşında Ölen Zaro Ağa'nın Ruhuna Fatiha - 1934” nuşte yo. Yanî “Lajê Şemsî Axayê Bidlîsijî Zaro Axa ke 160 Serrîya Xo de Merdo, Ruhê Ey rê Fatîha - 1934”.

Nê Zaro Axayî emrê xo de yew împaratorî, des padîşayî, vîst û heşt wezîrê azamî, yew cumhu-rîyet, di reysê cumhurî, panc serwezîrî û gelêk herbî dîyê.

Zaro Axa kurd o, lajê Semsî Axayî yo. 1774’an zî 1777’an de Motkan de, dewa Mermentî (Meydan) de ameyo dinya. Hetanî heştê sserrîya xo dewa xo de ciwîyayo, dima dayo piro şîyo Îstanbul de, semtê Topxaneyî de cuya xo dewam kerda. Verî, gama ke şîyo Îstanbul înşatê camîya Topxaneyî de xebitîyayo.

Seba ke cinîyê ey extîyar bîyê û merdê, Zaro Axa yewendes rey zewiciyayo. Hetanî 96 serrîya xo zî ci ra tutî bîyê. Pêro pîya 36 tutê ey bîyê la gama ke merdo tena kênaya ey a şeştî serrîye weş bîya, ê bînî pêro merdê. Mesela, gama ke Zaro Axa 130 serre bîyo, lajê eyo 90 serre ke extîyarî ra nêeşkayo hereket bikero, Zaro Axa xebitîyayo û ewnîyayo lajê xo ra.

Zaro Axa 1798 de binê qumandarîya Cezzar Ahmed Paşayî de Qelayê Aqa de vera artêşa Napol-yonî şer kerdo, 1800’an de Qişlaya Selîmîye ke bi emrê Selîmê hîrêyinî ameye viraştiş de xebitîyayo. Gama ke 1826’an de Ocaxê Yenîçerîyan darîyena we, o şer de Zaro Axayî zindanê binê Ayasofya de xo nimito, bi no qayde kiştiş ra felitîyayo.

1928 de beşdarê şerê rûsan û osmanîyan bîyo, linga xo ra birîndar bîyo. Badê herbî şîyo welatê xo Motkan. Badê ke weş bîyo, 1830’an de ancî şîyo Îstanbul. Camîya Ortaköy ke 1853’an de vi-razîyaya, Zaro Axa 80 serrîya xo de înşatê a camî de xebitîyayo.

Badê ke Ocaxê Yenîçerîyan wedarîyena, Zaro Axa ancî agêreno karê hemaltî ser, vîst serrî serhemalîya hemalanê kurdan keno. Seba ke merdimo tewr emirderg yê demê xo beno coka gama ke fek serhemaltî ra veradano zî ancî hemalê kurdî qedr û qîymetê ey zanê. Reysê beledîyeya Îs-tanbulî Op. Dr. Emîn Beg o wext payeyê serxedemetîya beledîye dano ey û ey rê 50 lîra meaş texsîs keno.

Vanê badê ke name û vengê Zaro Axayî vila beno, M. Kemalî zî venga ey dayo, pîya suhbet ker-do. Vanê Zaro Axayî vato, ez cumhurîyetî qebul kena la ez teswîp nêkena ke hende heq bidîyo cinîyan. Wa cinî keye de ronişê, etego kilmek nêdê xo ra û hende xo anêkerê.

Demeyêk hetê mektebê huneranê rindekan ra yew kampanyaya reklamî organîze bena û qerar danê ke sey model Zaro Axayî ra îstîfade bikerê. Badê na kampanya, îdarekarê ê demî Zaro Axayî keşf kenê. Naye ser o Cemîyetê Îqtisadîyê Millî û Teserufî yew kampanyaya reklamî organîze kena û qerar danê ke Zaro Axayî ra îstîfade bikerê. Nê demî de êdî kurdbîyayîşê Zaro Axayî înkar beno û sey tirkêk nîşan dîyeno, beno karakterêko winasî ke ey ser o propagandaya Tirkîya kenê. Kam-panya findiqan ser o dewam kena ke o wext findiqî malo tewr sereke yê ticaretî ra yew bîyê. Kart-postalê reklamî ke tede behsê çîyo ke Zaro Axa weno kenê, Macarîstan de tercumeyê çar ziwanan kenê û hemeyê dinya ra vila kenê.

Badê ke o wext Zaro Axa merdimo tewr emirderg yê dinya qebul beno û tayê kesî wazenê ticaret de ey ra îstîfade bikerê, naye ser o firsend keweno destê Zaro Axayî ke cayanê cîya-cîyayan yê dinya ra bigeyro. Ewilî 1925’an de Zaro Axayî bi gemî benê Îzmîr, uca ra zî benê Îtalya. Badê ke demeyêk welatanê Ewropa ra geyreno, dima 1930’an de new aşmî ey Amerîka ra çarnenê. Amerîka de êdî Zaro Axa sermanşetanê rojnameyan de yo. Tey roportaj kenê, seba xatirê ey şewê şahîyan tertîb kenê. Uca de yew zî qeza keno. Sereyê xo dano çîyêkê sertî ro û demeyêk hafizaya xo vindî keno la wucûdê ey sipîsax o. Badê qeza û rincanîya seyahetê dergî êdî wezîfeyê ey ê “tîcarî” zî uca temam beno. 1931’an de gelek çî ey rê wad kenê û ey benê Îngilîstan la bê ke panc qurişî pere bikewo dest ag-eyreno bi Îstanbul.

Nê deman nêweş keweno, ey rakenê Nêweşxaneyê Etfalî yê Şîşlî. Gama ke 1934’an de 160 se-rrîya xo de şino rehmet heme rojnameyê dinya manşet ra xebera mergê ey danê, vanê “Merdimo tewr emird-erg yê dinya şi rehmet”.

Cenazeyê ey otopsî kenê, raporê otopsî de dîyar kenê ke Zaro Axa qîmnêkerdişê velgan ver şîyo rehmet. Badê ke cenazeyê ey bidetay otopsî kenê Goristanê Eyubî de defn kenê. Seba ke sirê hende emirkerdişî keşf bikerê, mezg, kezeb û qelbê ey vejenê benê Amerîka. Badê ke mezgê ey tehlîl kenê, dima dekenê zereyê yew kawnozê caminî û Muzeya Tenduristî ya Sultanehmedî de demeyêko derg teşhîr kenê la badê mezgê ey beno vîndî.*





BasNûçe 19 - 25 Cotmeh 2015

Lîsa Asem

# Şaîrê bindestan Cegerxwîn



Mîrê helbesta kurd a beriya nifşên hevdem ku helbesta klasîk û ya nûjen bi zincîrên polayî bi hev girê da, di 32. salyada xwe de, bi hurmet û gramî tê bibîranîn. Cegerxwînê ku bi pênûsa xwe bûye çavkaniya feyza netewperweriya kurd, wek hemû rewşenbirên kurd, di nav xizanî de 'Bê lîs û hêlîn, bê ol û bê dîn Cegerxwîn bûye.' Di van rojên ku 32. salyada wî tê kirin de me xwest em çîroka wî ji şagirtê wî Şêxmûs Hemo yê ku ji piçûkatiya xwe heta dawiya emrê wî li gel Cegerxwîn maye û hemû dîwanên wî jiber dizane guhdarî bikin.

Bê guman her nifşên netewan xwedî bîrûboçûnên wêjeyî û hunerî ku jiyana wan pê têkel dibe û dibe şopeke diyarker a dîroka wan neteweyan û Cegerxwîn ji vê zêdetir e; Lewre ew bûye şopgere nifşan jî û her wiha bûye pira navbera nifşan. Wek her rewşenbîrên kurd ên dilşewatê netewa xwe Cîgerxwîn jî ji siyaset û tekoşîna netewî agahdar bûye û di nav de bûye. Şagirtê wî Şêxmûs Hamo dide zanîn ku Cegerxwîn di 13 saliya xwe de ji Hesarêya Kercewsa Batmanê derketiye, çûye binxetê û li wir pêşî ketiye nav komunîstan; Lê piştî ku kurd, di bin Partiya Demokrat a Pêşverû ya Kurd ku Nûredîn Zaza serkêşiya wê kiriye de civiyane, Seyda jî ji ber ku tu hêvî nedidan bo Kurdistanê dev ji Partiya Komunîst berdaye û tevlî tevgera Kurdistanî bûye. Hamo anî ziman ku dû mamosteyên Seydayê Cegerxwîn hebûne: Mamosteyê welatperweriyê Ehmedê Xanî û yê evîn û helbestê jî Melayê Cizîrî.'

Hamo, helbestvaniya Cegerxwîn wiha vedibêje: "Em dikarin bêjin di sedsala 20'an de mîrê helbesta kurdî Cegerxwîn bixwe ye. Seyda Tarîxa Şerefnameyê ji nesrê xilas kiriye û kiriye menzûm. Cegerxwîn di navbera helbestên klasîk û modern de wek pirekê ye. Wî ji kevneşopiyê sûde wergirtiye û bûye nûnerê helbesta modern. Di bin tesîra Melayê Cizîrî de gelekî maye. Digot 'herçî em helbestvanên piştî Cizîrî hatine, her yekî ji me rahiştiyî çoçika xwe û ji deryaya wî av vexwariye.' Di derbarê Xanî de jî digot; 'di warê welatparêzî, zimanzanîn û felsefeyê de ew, rêberekî bêhempa ye. Ji hêla hişyarkirina miletê de li ba Ehmedê Xanî xwe piçûk didît û digot; 'Ehmedê Xanî bi naqosa mezin milet nekir hişyar/ Ey Cegerxwîn bes binalî wek ceres."

Şêxmûs Hamo kirpand ku Cegerxwîn di her warî de helbest nivîsandine, di warê welatparezî, evîndarî, felsefe û siyasetê de bû pisporê hemûyan, bo nimûne şairekî bi navê Nîzar Qebarî ku wek şairê pîrekê navdar bûbû xwestiye Cegerxwîn bibîne û hatiye civata wî, piştî ku dibîne Cegerxwîn çi helbestên xweş ên evînî dibêje radibe dibêje; 'Gelî hevalan, min digot qey ez şairê pîrekê me, lê na, şairê pîrekê Seyda bixwe ye.

## Nameyên Xalid Beg û Şewqî Beg

Gelo Cegerxwîn çawa bûye evîndarê welat û bûye helbestvanê netewî yê gelê kurd? Şêxmûs Hamo anektodên balkêş parve kirin û got ku Cegerxwîn, bi çavê xwe tade û zorkariya li ser miletê xwe dîtiye û tê de jiyaye, hem zorkariya dewletên desthilatên Kurdistanê hem jî ya peyên wan ên wekî mela, şêx û axayan baş nas pê hesiyane û wisa domand: "Lê cara pêşî Seyda, li Qerecdaxê, ji Şewqî Begê Erxenî ku ji ber dewletê reviyaye hatiye mala ku Seyda tê de mêvan e hîn bûye. Şewqî Beg, Seyda dibe ber çem meseleya kurdan jê re dibêje. Her wiha Seydayî digot min di nav pirtûka Mele Ubeydullah de nameya Xalid Begê Cibrî ya ku berî Serhildana Şêx Seîd qala rewşa Kurdistanê û serhildanê dikir dîtiyî, wê nameyê û sohbeta Şewqî Begê pir bandor li min kir."

Hamo, destnîşan kir ku Seyda, dijminê axa, mele û şêxên pîs bû lê pesnê gelek şêxên welatparêz ên wekî Şêx Seîd, Şêx Evdirehmanê Axtepî, Şêx Ehmedê Xizna daye û rêya xilaskirina Kurdistanê di kur de dîtibe xwe avêtiye wê derê.

## Mele Mistefa: Kuro, te civat rût kir!

Hamo got ku Cegerxwîn, di rexneyê de wêrek bû, wek nûnerê Partiya Demokrat a Pêşverû beşdarî Kongreya Kurd a ku Mele Mistefa Barzanî li dar xistibû bûye û piştî kongreyê Mele Mistefa ji Seyda re dibêje 'Seyda, em penaberî Rûsya bûn, Stalîn em diavêtin nav rêhesinan, me kevir dişikandin û te jî li vir pesnê Stalîn dida!' û Seyda dibersivîne; 'Ji bo ku li we miqate bibe min pesnê wî dida ne ji bo xwe.' Hamo bale kişand ku wê çaxê baweriya Seyda ev bû ku Sowyet, bi rêya sosyalîzmê kurdan xilas bike ku ne tenê seyda, Mele Mistefa Barzanî bixwe jî wisa bawer dikir û wisa domand: "Piştî vê kongreyê Mele Mistefa Barzanî helbestek ji Cegerxwîn dixwaze. Cegerxwîn jî bi helbestekê çêrî dewlemedan kiriye: "Ey dewlemendên bêşeref, çi dikî zêr û pera, sed hezar milyonên zêran têxe kurtanê keran, ew pere bê rûmet in, bûne sebebê kuştin û talan û ceng... Îcar dewlemendên li dora Barzanî yeko yeko rabûne reviyane û Barzanî gotiye "Kuro te civat rût kir!"

## Dîroknasî û Kurdistaneke demokrat

Hamo got ku Cegerxwîn, ne tenê helbestvan, di heman demê de dîroknas bû û bi 3 berg tarîxa Kurdistanê nivîsiye û di mêjiya wî de Kurdistaneke serbixwe û demokrat hebûye lê dizanibûn ku şert û mercên her perçeyên Kurdistanê ne wek hev in û wek Partî Dîmokratî Pêşverû di vê baweriyê de bûn ku li her perçeyan li gor hikûmeta wan têbikoşin û alîgiriya otonomiyê jî dikirin, lewre wexta Sedam û Barzanî li hev tên Seydayê Cegerxwîn ji Mele Mistefa Barzanî re nameyek şandiye da ku Barzanî şer neke û otonomiyê qebûl bike û dom kir: "Cegerxwîn wê çaxê qîma xwe bi otonomiyê jî dianî, lê di serê wî de Kurdistaneke serbixwe û demokrat hebû."

## 'Bi şev li ser dîwaran helbest dinivîsandin'

Hamo anî ziman ku axaftina Seyda jî tev bi wezn û qafiye bû, gava bi şev tiştdihatin bîra wî, radihişt pênûsê, li ser dîwaran helbest dinivîsandin, dîwarên wî giş nivîs bûn. Gelek caran îstixbarata Sûrî helbestên wî digirtin û wisa dom kir: "Celadet Bedirxan û Şêx Ehmedê Xizna gelekî alîkariya wî kir. Seyda di sala 1922'an de dest bi helbestê kiriye û heta 1945'an şiîrên wî nebûbû dîwan. Celadet dibêje were Şamê em ê di govara Hawarê de helbestên te çap bikin bes pere di Seydayê de tune bû. Şêx Ehmedê Xizna pere dide Cegerxwîn da ku biçe Şamê helbestên xwe çap bike. Mirîdên wî dibêjin şêx im, tu pere didî Cegerxwîn lê wî di dîwana xwe de şerê te kiriye. Şêx Ehmedê Xizna dibêje, 'tiştên Cegerxwîn gotiye tev rast in.' Şêx Ehmedê Xizna di civata Xoybûn de bû. Seyda diçe Şamê ba Celadet, bo şiîrên xwe çap bike."

Hamo dibêje ku Cegerxwîn şairekî enternasyonal bû û ji bo hemû miletên bindest gotiye, di radyoya Bexdayê de mamosteyê zimanê kurdî bûye, piştî ku navbera Barzanî û Evdilkerîm Qasim xirab bû, Cegerxwîn ji Iraq'ê hat derxistin û îstixbaratê Sûrî wî girtine û xistine zindana Mezê cihê siyasiyan, lê Seyda qet nedisekinî, dawiyê wî sirgûn dikin nava durziyan û wisa dom kir: "Seyda di dema xwe de gelekî navdar bû. Bi helbestên xwe, bi kar û xebatên xwe navdar bûbû. Digel Haco Axayê mezinê federasyona Hewêrkan ji sibê heya êvarê bi Fransa'yê re dawa Kurdistanê dikirin. Tim di nav axa, gundî, şêx û melayan de diçû û dihat."






# Rya teze: Dengê kurdên Qafqasya'yê

**Hêmin Dildar**

Rya teze (Riya Taze) yekem rojnameya kurdî ye ku bi tîpên latînî hatiye çapkirin. Di 1'ê Nîsana 1930'î de li Erîwanê bi alfabeya kurdî ya Ereb Şemo û Îsahak Marogûlov ku di sala 1928'a de bi biryara dewleta Sovyeta hatibû amade kirin, li Sovyet'ê derçû. Rojname di destpêkê dehrojkî bû û bi çar rûpelan derdiket. Bi vî awayî Riya Teze beriya govara Hawarê ya Celadet Elî Bedîrxan dest bi weşanê kir. Her wiha rojname bi zarava kurmancî derdiçû û weke rojnameya herî temendirêj a kurdî tê zanîn. Riya Teze heta hilweşîna Sovyet'ê di sala 1992'a de dengê kurdên Sovyet'ê bû û niha jî dengê kurdên Ermenîstan'ê ye. Riya Teze bi tevayî ji 50 salan zêdetir ji aliyê dewletê, weke organa Komîtêya Navendî ya Partiya Komûnîst ya Ermenîstan'ê, parlamênê û hikumeta komarê bi fermî hate weşandin û niha jî bi awayekî serbixwe weşana xwe didomîne.

Riya Teze heta demeke dirêj li Ermenîstan'ê yek ji çar rojnameyên sereke yên wî welatî bû. Di dema desthilatdariya Stalîn de ji sala 1937'an heta 1955'an weşana Riya Teze hate rawestandin. Piştî mirina Stalîn di sala 1955'an de rojnamê weşana xwe domand. Riya Teze ya ku di sala 1955'an de cara dûyem dest bi weşanê kir êdî bi tîpên kîrîlî ku ji aliyê Heciyê Cindî ve dihat birêvebirin. Mîroyê Esed demeke dirêj ji sala 1955'an heta 1989'an berpirsiyariya rojnameyê dikir.

### Dibistana edîban

Rojname ya Riya Teze li ser rojnamegerî û hişyarkirina hestên netewî yên kurdî bandoreke mezin kir. Li gel tesîr û hişyariya netewî rojname ji nivîskar û şairên kurd ê wê serdemê re bû weke nûsîngeheke û gelek nivîskar û şair mezin ê kurdî di rojnameyê de gihiştin. Qaçaxê Mirad, Şekroyê Xudo, Xelîlê Çaçan, Babayê Keleş, Têmûrê Xelîl, Tîtal Mûradov, Elîyê Evdirehman, Egîtê Xudo, Hesenê Qeşeng, Prîskê Mihoyî, Rizganê Cango, Porsora Sebrî, Tîtalê Efo, Karlênê Çaçanî, Şerefê Eşir, Egîtê Ebasî, Paşayê Erfût, Letîfê Emer, Emerîkê Serdar, Gayanê Hovhannîsyan û gelek nivîskar û edîbên din di vê rojnameyê de xebitîn û keleporeke mezin a kurdan anîn pê.

### "Jiyana kurdewarî hebû"

Rojname niha jî weşana xwe didomîne. Li gor zanyariyan ji ber rewşa aborî carcaran weşana rojnameyê tê rawestandin û dernakeve. Her çend rewşa nebaş a aborî rê li ber wê yekê girtibe ku weaşana rojnameyê hin caran bisekine jî kedkarên qedîm ê rojnameyê li ser belavkirina zanîn û zanistê berdewam in. Nivîskar û rojnameger Têmûrê Xelîl demeke dirêj di Riya Teze de kar kiriye û niha edîtoriya malpera www.riataza.com ê (versyona kurdî) dike ji BasNûçe'yê re axivî. Têmûrê Xelîl li ser kelepora Rya teze, tesîra rojnameyê û halê dawî yê rojnameyê hin agahî dan û eşkere kir ku dema Riya Teze çap û belav dibû li Erîvanê û li Sovyet'ê jiyaneke kurdewar hebû. Her wiha Xelîl amaje bi wê yekê jî kir ku li gel Radyo ya Erîvanê şanoyên kurdî jî bi rêve diçûn. Xelîl bal kişand ser tesîr û jiyana serdema Sovyet'ê a kurdan û wiha berdewam kir: "Berhemên gelek kesên helbestvan, nivîskar di rojnameyê de çap bûn. Hêdî hêdî nivîskarên me gihiştin bi destê wê rojnameyê, komela hebûn, tiyatroya kurdî hebû, jiyanek kurdevarî li welatê me hate bi cîh kirin. "Di berdewamiya axaftina xwe jî de Têmûrê Xelîl amaje bi wê yekê jî kir ku kurdên Sovyet'ê derfetên ku bi dest xistine gelekî baş bikaranîne û kirine ku lîteratureke ava bikin. Her wiha Xelîl da zanîn ku lîteratura wan li Sovyet'ê ava bûye û ew ne malê kurdên Sovyet'ê tenê ye, lê ew malê hemû kurda ye."

### "Kêşeya aborî heye"

Li hêla din Xelîl da zanîn ku li ser wan berheman lêkolîn jî tên kirin û wiha domand: "Hikumetê jî bi xurtî alîkarî dikir, ji bo ku kurd karibin çand û adetên xwe pêşve bibin. Ew alîkarî ji bo kurdên Sovyet'ê bûn. Me bingehek çê kir, lê ew bingeh kurdên derveyî Ermenîstan'ê yanî dervayê Sovyet'ê nikaribûn bi kar bianîna. Hat dîtin ku me karekî pir mezin kiriye û niha gelek kar û lêkolîn li ser wan tê kirin. Tevahiya kurdên Kurdistan'ê edî dikarin berhemên me û radyoyên me, şanoyên me bibînin. Ev tevahî bûne mulkê hemû kurdan, ne tenê kurdên Sovyet'ê. "Di berdewamiya axaftina xwe jî de Xelîl bal kişand ser rewşa niha ya rojnameya Riya Teze û da zanîn ji ber kêmasî û nebûna derfetan rojname dernakeve û piştî hilweşîna Sovyet'ê hikûmetê jî piştevaniya li rojnameyê birîye. Her wiha Xelîl ragihand ku rojname her ji çend mehan derdikeve û aboriya Ermensîtanê jî zêde ne baş e û nikare alîkariyê bide rojnameyê.

### Riataza.com di şopa Riya Teze de ye

Xelîl li ser rewşa kambax a kurdî û weşanên li Sovyet'ê jî rawestiya û wiha got: "Ew alîkariya ku dewletê dida rojname û radyo û dersên zimanê kurmancî ew aniha hema-hema qut bûne. Alîkariya li me nemaye. Berê me hefteyê de du caran çap dikir, aniha rojname ancax ji sê çar mehan carekê çap dibe. "Niha çanda me ya kurdî li dibistanê ketiye rewşekî wisa, ku ne hikumeta Ermenîstan'ê dikare alîkarî bike û ne jî Kurdistan alîkarî dike, yanî em li rastê manê. Ew rojnameya nêzîkî 85 salan e çap dibe. "Nivîskar û rojnameger Têmûrê Xelîl li ser weşana malpera www.riataza.com ê jî rawestiya û da zanîn ku ew malper jî ew ê bibe dibistaneke mezin ji bo kurdiyê û ew ê geşedaneke nû bide destpêkirin. Xelîl li ser proseya malperê jî rawestiya û wiha berdewam kir: "Ew malper nûh dest pê kiriye, navend li Moskovayê ye. Di karê dibistanê, karê rojnamegeriyê, nivîskariyê de gelek kes hene ku wî karî bikin. Me du meh e dest pê kiriye û malpera me kurdî û rusî ye û herkes dikare bixwîne. Ez li ser wê baweriyê me ku kurmanciya wê jî gelek xurt e. Di malperê de radyo jî heye. Dimîne yên ku di hêla nivîskariye de zana ne alîkariya me bikin. "Her wiha Xelîl da zanîn ku wan dest bi belavkirina meqale û babetan kiriye û ew amadekariyên televîzyonekê jî dikin û ew ê televîzyonekê jî vekin. Xwînerên BasNûçe'yê jî dikarin ji ser lînka http://riataza.com/ babet, geşedanên li ser edebiyat û civaka kurdên Qafqasiya'yê, Rûsya'yê û Kurdistan'ê bixwînin.





# Amed bi wêneyan geş bû

**Di nav dengê teqinên çek û topan de, li Amedê, bi hevkariya Şaredariya Parêzgeha Amedê û DİFAK'ê û bi beşdariya wênekarên navdar ên cîhanê û yên ji Başûrê Kurdistanê '3. Rojên wêneyan a Navnetewî' dest pê kir. Di van rojên ku wê bi çalakiyên wêneyî yên xebatên kargehî û pêşangehan ji bo Amedê henaseyeke wêneyî peyda kir de, wênekar, li gel kavilê şer û pevçûnan jî çêja qedîm a Amedê bêhn kirin û bûn hevkêşên êşa dîrokî ya vî bajarî.**

**Kalê Badî**

Li Amedê hesreta çalakiyên hunerî ku demek dirêj e ji ber şer û pevçûnan hatibûn rawestandin, bi çalakiya Rojên Wêneyan bi dawî bû. '3. Rojên Wêneyan a Navnetewî' ku bi hevkariya Şaredariya Parêzgeha Amedê û Klûba Amatorên Wêneyan a Amedê (DİFAK) roja îniyê destpê kir, her çiqas ji ber rewşa aloz ji alî gel ve baş neyê şopandin jî, wênehez bi dîdariya wênekarên navdar ên dinyayê û yên ji Başûrê Kurdistanê kêfxweş bûn. Di çarçoveya bernameya Rojên Wêneyan de gellek pêşangeh û hemdîdariyên wênehez û wênekarên navdar pêk hatin.

Çalakiya '3. Rojên Wêneyan a Navnetewî' ku çarşema çûyî, bi xebatên kargehî amadekariyên wê hatin kirin, di 16'ê Cotmehê de, li Eywana Pêşangehê ya Şaredariya Parêzgeha Amedê, bi pêşangeha wênekarê navdar Norair Chahininan'ê ku di dawiya serdema Osmaniyan û destpêka desthilatiya Îttihat û Terakkî de, ji ber polîtîkayên qirkirina li dij ermenan, malbata wî piştî demeke mişextiya li Heleba Sûriyeyê, berê koça xwe dabûn rojavayê dinyayê û di encamê de gihîştine Brezîlyaya Amerîka Latîn û çavên xwe li vî welatê dûrê welatê bavan vekirî ye dest pê kir.

Çalakiyên Rojên Wêneyan, 17'ê Cotmehê roja şemûyê li Pirtûkxaneya Gel a Ofîsê bi panêla bi navê 'Sînor' û li Galeriya Hunerê ya Qada Sumerparkê bi pêşangehên Alî Arkadî 'Vegera Çiyayan', ya Anush Babajanian 'Di hundur de', Aram Kerîm 'Sînorê Kurdistanê', ya Berge Arabian 'Strana dawî ya cûbiran', a Binar Serdar 'Dû bawerî di bin stargehekê de', ya Îsmaîl Gokçe 'Ji jiyanên sînor dû çîrok', a Sabîha Çîmen 'Penaberên bajarvan', a Yûsûf Aslan 'Soberiya di deryaya agir de' û ya Ajansa We PHOTO 'Sînor-rewş' ên ku ji wêneyên gellek wênekaran pêk dihat dom kirin.

Di çarçoveya bernameya Rojên Wêneyan de her wiha çend pêşandanên wênekarên DİFAK'ê jî hatin lidarxistin. Ev çalakî di 18 Cotmehê roja yekşemê, li Sînemaya Piçûk a Bûrhan Karadenîz a Şaredariya Parêzgeha Amedê bi pêşandan û hemdîdariyên di derbarê wênekariyê bi encam bû.

**Dundar Ûgûrlû: Bername dewlemend bû**

Di derbarê 3. Rojên Wêneyan a Amedê ya Navneteweyî Klûba DİFAK'ê de Serokê Lijneya Rêveber a DİFAK'ê Dundar Ûgûrlû da zanîn ku wan di sala 2009'an de bi armanca geşkirin û gelemperkirina hunera wênekêşiyê û zêdekirina wênekaran DİFAK'ê damezirandiye, di bin banê vê dezgeha fermî de wan hewl daye ku li Amedê wênekariya ku wek zimanê dîmenî tê binavkirin bi pêş bixin û kesên ku dixwazin vî karî bikin perwerde bikin. Ûğûrlû got: "Me xwest ku em wênekarên ku wê dikaribin civak û welatê xwe bi wêneyan bidine nîşandan bigihînin û ji bo gihandineke baş derfetan dabin bikin. Me hewl da ku em tecrûbeyên berê û pisporiya îroyîn li hev bigonciyînin û arasteyî nifşên nû bikin. Bi vê mebestê heta niha me 25 kurs û semînerên perwerdehiya wênekariyê bi rê ve bir. Wek hejmar nêzîkî 450 ciwanan perwerdehî ji me wergirtin. Ev serkeftineke pir baş e ji bo me."

Di derbarê Rojên Wêneyan de jî Dundar Ûgûrlû anî ziman ku bernameya wan pir dewlemend bûye, ji Amerîka, Kanada, Ewropa û Ermenistanê wênekarên bi navbang ku di qada navneteweyî de karên pir serkeftî pêk anîne hebûne û ji alî wênehezên Amedê ve jî bi kêfxweşî hatine pêşwazîkirin.

**Binar Serdar: Wênekarên kurd serkeftî dibin**

Di çarçoveya 3. Rojên Wêneyan a Amedê ya Navneteweyî de wênekarên Başûrî Binar Serdar bi pêşangeha xwe ya bi navê 'Dû bawerî di bin stargehekî de', Alî Arkabî bi pêşangeha bi navê 'Veger ji bo çiyayan' û Aram Kerîm jî bi pêşangeha xwe ya bi navê 'Sînorê Kurdistanê' beşdarî çalakiyan bûn. Di derbarê beşdariya wênekarên ji Başûr de, wênekara ji Silêmanî Binar Serdar, ji be beşdarî çalakiyeke wiha bûye kêfxweşiya xwe ragihand û ani ziman ku ew hêvî dike çalakiyên bi vî rengî yên ku hunermendên perçeyên cihê yên Kurdistanê li hev dicivînin zêdetir bibin. Serdar da zanîn ku ew ji mêj ve bi vî karî re mijûl dibe, wan li Silêmaniyê Ajansa Metrografî ya wêneyan saz kirî ye û di demeke kurt de ajansa wan bûye baştirîn ajansa wêneyan a Başûrê Kurdistanê û Iraqê. Binar Serdar got: "Ev cara dûyem e ku ez bi ser navê ajansa me beşdarî çalakiyên Bakurê Kurdistanê dibim û ji ber vê yeke ez pir kêfxweş im. Di çalakiyên 3 Rojê Wêneyan a Amedê ya Navneteweyî de li gel pêşandana min a bi navê 'Dû bawerî di bin stargehekî de' her wuha min semînerekî jî da û di vê semînerê de min wek wênekareka jin helwesta xwe ya vê pîşeyê rave kir û min xwest ku ez moral bidime wênekarên jin ên Bakurî da ku di vî warî de xwe bi pêş bixin."

**'Wênekarî taybet ji bo kurdan grîng e'**

Li ser grîngiya hunera wêneyê de jî Serdar anî ziman ku ev huner taybet li Kurdistanê pir grîng e. Serdar wiha domand: "Li Başûr û Rojavayê Kurdistanê di bereyên hezar kîlometreyan de keç û lawên ciwan ên kurd li dij DAIŞ'ê tekoşîneke pir mezin pêk tînin. Ji ber vê yekê divê hemû wênekarên me û bi taybetî rojnamegerên wêneyan xwe bigihînin. Çimku em dibînin rojnamegerên cîhanî ji dûrî Kurdistanê têne Kurdistan û wêneyak dikêşînin û di rojname û ajansên bi navbang ên cîhanê de diweşînin. Ev pirsgirêkek e; Lewre yên biyanî ne şarezayê Kurdistanênê û ne jî ziman dizanin. Rojnameger û wênekarên kurd ji yên cîhanî pir derfetdartir in. Ji ber ku ji herêmê ne, herdî baştir dinasin û dizanin çi li ku derê dixewime."

Di derbarê pisporiya teknîkî ya wênekarên kurd de jî Binar Serdar diyar kir ku li gel bêderfetiya xwendina akademîk û têgihîştina teknîkî ya vê hunerê jî, wênekarên kurd ên ku bi derfetên xwe, xwe bi pêş xistine, bûne pisorê vî karî û wêneyên pir baş ên ku di rojname, govar, û ajansên cîhanî yên bi navbang de hatine weşandin hene. Serdar got: "Ev ji bo me cihê xweşhaliyê ye û em hevî dikin ku ev serkeftinên wênekarên kurd hin zêde bibin; Lewre ev huner an jî pîşe taybet ji bo kurdan pir grîng e."

Binar Serdar ji bo di nav ciwanên kurd de geşbûna vê hunerê de jî van pêşniyazan kir: "Taybet ez pêşniyaz li keçên kurd dikim. Di rastî de hejmara wênekarên keç ên kurd kêm e. Ez bixwe li Silêmanî rojnamegeriya wêneyî dikim. Keç û jinên ku karên amatorî yên wênekarî dikin hene, lê belê yên ku dikaribin bi şêweyekî profesyonelî rojnamegeriya wêneyî ya li meydanê bikin û dikaribin bicine bereyên şer pir kêm in. Armanca min a sereke zêdekirina hejmara wan e."

